BasNûçe
HERDEM RASTÎ
Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL
Hejmar: 53 11 Gulan - 17 Gulan 2015 basnews.com



**Mikail Aslan**
**Vengê royê Feratî û vengê Çemê Muzirî...**
R06-7

# Bihara Mahabadê zivistana Îranê



Li Mahabadê, piştî ku keça kurd Ferînaz Xusrewanî ji bo xwe ji destdirêjiya endamên îstixbarata rejîma Îranê rizgar bike xwe ji pencereya qata çaran a otêla ku lê dixebitî avêt û jiyana xwe ji dest da gel rabû ser piyan. Di bûyeran de çend kesan jiyana xwe jidest dan û brîndar bûn.

Bi sedhezaran Mahabadî ji bo rûreşkirina rejimê daketin qadan û otêla ku bûyer lê qewimiye şewitandin. Çalakiyên ku roja duşamê destpê kirin roj bi roj mezintir bûn û li bajarên din ên Rojhilatê Kurdistanê belav bûn. Di navbera xwepêşander û hêzên rejimê de pevçûn didomin.

**Raperîn: Ezê bi kurdî deng vedim** R16

**Arezûnûsên Amedê bi gazinc in** R12

**Li Amedê dema pirtûkan** R15

## Li diji Kobanê plana nû: DAÎŞ-Boko Haram



Piştî vegera Pêşmerge ya ji Kobanê DAÎŞ careke din ket nav hewla êrîşan. DAÎŞ amadekariyên bi hevkariya Boko Haram dike da ku careke din Kobanê dorpêç bike. R04-5

## "Li qada medyayê jî serkeftin divê"

Doç. Dr Ekrem Önen ê ku li ser medyaya kurdî gelek xebat kiriye diyar dike ku di serdema me de rola medyayê ya li ser civakê gihîştiye qonaxeke bêhempa lê medayaya kurdî ji vê qonaxê pir dûr e. Önen bal kişand ser bandora medyayê ya di demên şer de jî û meseleya Vietnamê bibîr xist da ku hin şer hene bi saya medyayê têne wendakirin an jî qezenckirin. Önen anî ziman ku medyaya kurdî hîn ji qonaxa hizbatiyê derneketiye. R08-9

**Mehmet Gültekin**
Dîrokzan Olfert Dapper û Kurdistan R14

**Welat Baz**
Mahabad R10-11

**Mamend Rojê**
Li Rojhilat dîwarê stratejîk R13

# Mahabad careke din bû peytexta serhildanê

**Mustafa Turan**

Piştî serhildana Mahabadiyan rejîma Îranê li bajêr rewşa awarte olan kir û hêzên xwe yên asayîşê yên bajarên din arasteyî Mahabadê kir. Çalakî û pevçûn hê jî dom dikin û tê payîn ku di van pevçûnan de heta niha 2 çalakvanan jiyana xwe ji dest dane, nêzîkî 30 ji wan birîndar bûne û bi dehan kes jî hatine destgîrgirin. Her wiha hêzên rejîmê, ji bo parastina wî gerînendeyê Otêlê Seyîd Mûrteza Haşimî ku tê payîn hevkariya ew endamên îstixbaratê kirî ye ew destgîr kirî ye.

Her çiqas li her sê perçeyên Kurdistanê, bi taybetî jî li Başûr û Rojava şerekî mezin bimeşe û Rojhilatê Kurdistanê di vî warî de aram xuya bike jî bûyera ku li Mahabadê rû da û xwepêşandan û pevçûnên piştî vê bûyerê didin xuyakirin ku di demên pêş de wê li Rojhilatê Kurdistanê jî rewş ber bi aloziyê ve biçe. Jêderên me yên ji Rojhilat didine zanîn ku li Rojhilatê Kurdistanê, ji ber sêdarekirinên siyasî ku di van salên dawî de zêdetir bûne, helwesta rejîmê ya qrêj ku bi ser dezgehên asayîşê ve ciwanên kurd bi tîryakê dixe tora xwe û bi vê rêbazê ciwanan ji mijarên siyasî dûr dixe û bi geşnekirina rewşa aborî ya herêma Rojhilat, di nav gelê Rojhilat de nerazîbûneke mezin durust bûye û ev nerazîbûn bi vê bûyerê re xwe daye der.

## Bûyer çawa qewimî?

Egerî ew e ku 4'ê Gulanê roja dûşemê li Mahabadê li Otêl Tara'yê keça kurd a bi navê Ferînaz Xusrewanî ya 26 salî, piştî ku bi hevkariya xwediyê otêlê rastî destdirêjiya endamên îstixbarata rejîmê ya Îtlaatê tê, ji bo xwe ji dest wan rizgar bike xwe ji qata çaran a otêlê dihavêje xwarê û jiyana xwe ji dest dide. Piştî ev bûyer di nav gel de belav dibe gelê Mahabadê dadikeve kuçe û kolanan û ber bi otêla ku bûyer lê rû daye ve dimeşin û bi gihîştina ber otêlê ve agir bi otêlê dixin û dixwazin ku ew endamên îstixbaratê bêne cezakirin. Li ser vê yekê hêzên asayîşê mudaxeleyî çalakvanan dikin û şer û pevçûneke mezin di navbera xwepêşandêr û hêzên asayîşê de derdikebe. Hate ragihandin ku di van pevçûnên ku hêzên asayîşê bi guleyên rasteqîn û bombeyên çavsotar êrîşî xwepêşandêran kirine de du kes hatine kuştin û nêzîkî 30 kes jî birîndar bûne. Piştî berfirehbûna çalakî û bûyeran, Serokkomarê Îranê Hesen Rûhanî ji bo hêzên ewlehiyê ferman da ku di mudaxelekirina çalakiyan de bi tu awayî guleyên rasteqîn bikar neyînin. Her çiqas Rûhanî vê fermanê dabe hêzên asayîşê jî, agahiyên ku ji jêderên herêmê têne ber destên me diyar dibe ku hêzên ewlehiyê bi guleyên rasteqîn êrîşî xwepêşandêran kirine.

## Buyer bi guman e!

Di derbarê bûyer û çalakiyên ku li Mahabadê rû dan de Aktîvîstê Rojhilatî



Helmet Marûfî ji BasNûçe'yê re ragihand ku ew ji mêj ve li benda teqîneke wiha ya civakî bûne û ew teqîn jî piştî vê buyera li Otêl Tara'yê rû daye. Marûfî diyar kir ku ji destpêka şoreşa îslamî ya Îranê ve gelê kurd ên Rojhilat ji alî rejimê ve hatine qewirandin, tu kar û xebateke ku rewşa aborî û xizmetguzariya bajarên Rojhilatê Kurdistanê baştir bike nehatiye kirin, rejîmê her gav helw daye ku bi xizanî û bêderfetiyan gelê Rojhilat bi terbiye bike, ji ber vê yekê gel ji destpêka şoreşê ve hêrsa xwe di xwe de veşartiye û ev bûyera ku niha rû daye bûye egera derbûna wê hêrsa salan. Helmet Marûfî wiha dom kir: "Ev bûyer ji destpêkê ve bi guman e. Egerî heye ku rejîmê bixwe mirovên xwe xistibe nav çalakvanan da ku bûyer aloztir bibe, lewre di demeke nêz de ji bo sermayeguzariya Mahabadê baştir bibe û rewşa bajar ya aborî baştir bibe bi taybet bi sermayedarên Başûrî re hevdîtinan destpê kiribû û çav li rê bû ku di demeke nêz de li Mahabadê konferanseke ji bo geşkirina sermayeguzariyê bê lidarxistin"

## Gumanbarên bûyerê serbest in

Li gel ku şahidên vê bûyera kuştina Xoşrewanî hene jî ne berpirsên asayîşê ne jî yên hikûmet û dewletê di derbarê darizandin an jî binçavkirina her dû kesên ku tê gotin endamên dezgeha sîxurî ya Îtlaatê ne de tu daxuyaniyekê nedane. Di derbarê mijarê de Kawa Rojhilatî ku yek ji siyasiyên grîng ên Rojhilatî ye jî ragihand ku çalakî û pevçûn dikare bi darizandina ew kesên gumanbar rawestin lê belê rejîma Îranê di vê mijarê de heta niha tu tiştekî nekirî ye. Kawa Rojhilatî got: "Gel vê daxwazê dike ku rejîm kujerên Ferînaz Xoşrewanî radestî dadgehê bikin, kujer bêne darizandin û cezayê wan bê dayîn. Ev daxwaz, daxwazeke mirovî rewa ye. Lê belê li gel nadarizandin an jî destgîrkirina gumanbaran rejîm ji bo ku bikaribe bûyerê kontrol bike, li Mahabadê hejmara hêzên ewlehiyê zêdetir dike û ji deverên dinê pasdar arasteyî Mahabadê dike" RojhelatîHerwiha ji ku canê wan parastî be, malabata Nadir Mewlûdî ji bajar dûrxiste. Nadir Mewlûdî wan îdîayan retdike ku ew pirs pirsa destdirêjiyê be. Lê hin ji karmendên otêlê vê îdîayê navbirî retdikin û qala wê yekê dikin ku berpirsiyarekî hikumetê di otêlê de destdirêjiya wê kiriye û sedema xwe kuştina Ferînazê jî ev e.

## Waliyê Mahabadê: Bersûc xebatkarê otêlê ye

Di derbarê vê bûyerê û çalakiyên ku piştî bûyerê rû dan de dewlelta Îranê û peywirdarên wê yên herêmê bêdeng man lê piştî ku çalakî berfireh bûn û li bajarên din ên Rojhilat belav bûn bêçar man ku daxuyaniyekê bidin. Li ser vê yekê Waliyê Mahabadê Cafer Ketanî bi ser Ajansa Fermî ya Dewleta Îranê (ÎRNA)yê daxuyaniyekê da. Ketanî di daxuyaniyê de angaşt ku bersûcê kuştina Ferînaz Xusrewanî ne endamê dezgeheke fermî ya dewleta Îranê, xebatkarekî otêlê ye. Ketanî, ragihand ku bersûc hatiye destgîrkirin, di derbarê bûyerê de lêkolînên wan dom dikin û heta ku lêkolîn bi encam nebin û bûyer baş zelal nebe ew nikare di derbarê detayên bûyerê de tiştekî bêje. Ketanî di derbarê lêkolînan de jî got ku hemû delîl tomarên têlefonan ji bo lêkolînê têne berhevkirin û piştî lêkolîn biqedin ew ê encamên wê ji raya giştî re eşkere bikin. Walî her çiqas bersûc wek xebatkarekî otêlê nîşan bide jî hewldana destdirêjiya Ferînaz Xusrevanî ku bûye sedemê xwekuştina wê înkar nekir. Hat ragihandin ku ev daxuyaniya Walî, ji alî gelê Mahabadê ve weke; şaşnîşandana bersûcên rastîn û pûçkirina sedemên çalakiyên nerazîbûnê tê şîrovekirin.

Ji alî di ve dewleta Îranê bi daxuyaniyeke din ragihand ku di çalakiyên ku ji bo berteknîşandana bûyerê ku di navbera çalakvan û hêzên asayîşê de şer û pevçûn derketibûn de 7 jê endamên asayîşê, bi giştî 27 kes birîndar bûne. Cîgirê Waliyê Parêzgeha Ûrmiyeyê Elî Riza Dadfer jî beriya vê daxuyaniyê ragihandibû ku di bûyera xwekuştina Ferînaz Xusrewanî de destdirêjî tune ye, ev yek di raporta adlî de jî hatiye teqezkirin û partiyên xêrnexwazên rejîma Îranê yên wek Komele û PDK-Î ciwanan çavsor kirine û bûne sedemên van aloziyan. Dadfer ragihand



Dewleta Îranê bi daxuyaniyeke din ragihand ku di çalakiyên ku ji bo berteknîşandana bûyerê ku di navbera çalakvan û hêzên asayîşê de şer û pevçûn derketibûn de 7 jê endamên asayîşê, bi giştî 27 kes birîndar bûne.



ku wan bûyerên şewitandina otêlê ji nêz ve şopandiye û dîtine ku ew kesên ku otêlê şewitandin hemû kesên ciwan bûne û ji malbatên ciwanan xwest ku li keç û lawên xwe xwedî derkebin û wan ji bûyeran dûr bikin. Dadfer her çiqas bide zanîn ku di bûyeran de 25 kes birîndar bûne jî, jêderên ji herêmê radigihînin, ji ber ku gellek çalakvanên ku birîndar bûne, ji bo li nexweşwaneyan ji alî asayîşê ve neyêne destgîrkirin neçûne nexweşxaneyan û di malên xwe de xwe derman dikin. Dadfer her wiha ragihand ku di bûyer û pevçûnan de ku kes nehatiye kuştin û asayîş bi rêbazeke medenî hewl daye ku pêşî li bûyeran bigire. Dadfer di dawiya axaftina xwe de gefê li partiyên kurd xwar û got: "Ev sebra asayîşê zêde dom nake û eger hin alî zêdegaviyan bikin û bûyeran sortir bikin, wê hêzên me yên asayîşê jî bi tûndî bersiva wan bidin."

## Çalakî berfireh dibin rejîm hêza leşkerî dişîne herêmê

Xwepêşandanên ku li Mahabadê destpê kirin tenê li Mahabadê neman. Hate ragihandin ku li gellek bajarên din ên Rojhilat jî ji bo piştgirîdayîna gelê Mahabadê û şermezarkirina rejîma Îranê xwepêşandan hatine destpêkirin. Di derbarê xwepêşandanên li bajarên din ên Rojhilat ên wek; Pîranşar, Sîne, Seqiz û gellekên din de Helmet Marûfî da zanîn ku piştî li hemû bajarên Rojhilat çalakî destpê kirine hêzên asayîşa Îranê dest bi bergiriyê kirine û bi vê mebestê ji bajarên din ên Îranê hêzên asayîşê arasteyî bajarên Rojhilat bi taybetî jî arasteyî Mahabadê kirine. Marûfî ragihand ku li Mahabadê rewş pir xetere, hêzeke mezin a asayîşê ku tê payîn nêzîkî 20 hezarî ye li Mahabadê hatiye bi cihkirin, rewşa awarte hatiye olankirin û ger ku li bajarên din jî çalakî dom bikin egerî heye ku li wan bajaran jî heman bergirî bêne pêkanîn.

## Ji partiyên Rojhilat bertekên tûnd

Piştî bûyera li Otêl Tara'yê û çalakiyên li Mahabadê partiyên kurd ên Rojavayê Kuridstanê jî bertekên tûnd nîşan dan. Partiya Demokrat a Kurdistan-Îran (PDK-Î) ragihand ku ger Îran daxwaziyên çalakvanan erênî nebersivîne wê bajarên din ên Rojhilatê Kurdistanê jî serî hildin. Berpirsê Nûsîngeha Hewlêrê ya PDK-Î'yê Mihemed Salih Qadirî diyar diyar kir ku ev çalakiyên xwedî derketina keça kurd nîşane ye ku kurd çawa xwedî li çand û mîrateya xwe derdikebe û hişyarî da dewleta Îranê da ku daxwazên gelê Mahabadê bibersivîne. Qadirî got: "Ev hestiyariya gelê kurd dewleta Îranê tirsandiye. Dewleta Îranê maf û azadiya gelê kurd binpê kirî ye. Em wek PDK-Î vê helwesta gelê kurd slav dikin û piştgirî didine çalakvanan. Ew destên ku drêjî keça kurd bûne hêza xwe ji feraseta nîjadperestiya qirêj a dewleta Îranê distîne."

Sekreterê Giştî yê Partiya Azadiya Rojhilatê Kurdistanê(PAK) Huseyn Yezdanpena jî bi ser Basnewsê ve ragihand ku wan bang li hemû Pêşmerge û alîgirên xwe kirine ku li hember vê bûyerê bi şêweyên demokratîk asta çalakiyên xwe berztir bikin. Yezdanpena got: "Niha li hemû bajarên Rojhilatê Kurdistanê rewşa awarte heye. Gel ji bo berdewamiya çalakiyan amadekariyan dike. Çirûska ku li Mahabadê pêketiye bandora xwe daye Merîwan, Bokan, Şino û bajarên din ên Rojhilat. Li hemû Kurdistanê çalakî hene" Yezdanpena, ragihand ku hêzên Pêşmerge di navbera Ûrmiye û Şînoyê de, li dij pasdarên Îranê çalakiyên bertekî pêk anîne û got: "Ji bo ku gelê me ziyanê nebîne em naxwazin di nav bajaran de çalakiyan pêk bînin û ji ber ve yekê me li derveyî bajaran çalakî pêk anîn. Artêşa Îranê i Hemedanê hêzeke mezin arasteyî Kurdistan kiriye û ji bo çalakiyan bitepisîne planeke nepenî li dar dixe. Lê belê Pêşmergeyên me li dij van planan amade ye û ger ku li dij gelê kurd êrîş pêk bên, em ê bi êrîşên mezintir bersiva wan êrîşan bidin"

Her wiha Komalgeya Demokratîk a Azadiya Rojhilatê Kurdistanê (KODAR) ku sala çûyî wek jêrdezgeheke Partiya Jiyana Azad a Kurdistanê (PJAK) hatibû îlankirin jî di derbarê bûyerên li Mahabadê de bi daxuyaniyekê gefan li dewleta Îranê xwar û ragihand ku xwîna Ferînaz Xusrewanî li erdê namîne. KODAR'ê ji ber helwesta wan a li dijî çalakiyên gelê Mahabadê hezên asayîşa Îran tawanbar kir, gefa tolhildana Xusrewanî li dewleta Îranê kir û got ku 'ewê xwîna keça kurd Ferînaz Xusrewanî li erdê namîne.'

## 'Bihara ereb jî bi çalakiyeke piçûk destpêkiribû'

Li gor agahiyên ku ji Mahabad û Rojhilatê Kurdistanê têne ber destên me roj bi roj hejmara kesên ku beşdarê çalakiyan dibin zêdetir dibe û bayê van çalakiyan li tevahiya bajarên Rojhilat belav dibe. Li gor agahiyên ku muxalefeta Rojhilatê Kurdistanê didin, çalakiyên piştgiriyê li bajarên wek; Nexede, Pîranşar, Şino û Bokanê jî destpê kirine û ev çalakiyên van bajaran jî roj bi roj mezintir dibin. Çalakvana Mafê Jinan a Rojhilatî Sebrî Behmenî jî ji BasNûçeyê re diyar kir ku di dîroka dûr û ya nêzîk a cîhanê de jî ew bûne şahid ku çalakiyên piçûk dikarin rê li ber guherînên mezin vekin, guherînên li Rojhilata navîn ên ku bi navê 'bihara ereb' têne binavkirin mînak nîşan da û got: "Ev bûyer beşek e ji azarên dijwar ên ku rejima Îranê li ser gelê kurd pêk tîne. Ev mesele hem zordestiya li ser jinên kurd û hem jî pêkutiya siyasî ya li ser gelê kurd nîşan dide. Egerî heye ku ev bayê çalakiyên ku piştî vê bûyerê rû dane, bi carekê li her deverên Rojhilatê Kurdistanê belav bibe. Divê neyê ji bîrkirin ku 'bihara ereb' li bajarokekî piçûk, bi xweşewitandina ciwanekî destpê kir û li bakurê Afrîka û Rojhilata navîn belav bû."

## Nerazîbûn li tevahiya Kurdistanê belav bûn

Piştî rûdana bûyera xwekuştina Ferînaz Xusrevanî û çalakî û bûyerên bertekî ji partî û dezgehên perçeyên din ên Kurdistanê jî bertekên nerazîbûnê berz bûn. Li bajarên mezin yên Kurdistanê Silêmanî, Hewlêr û Amedê bi çalakiyên nerazîbûnê yên partiyên siyasî, dezgehên jinan û kesayetên siyasî û olî pêk hatin. Li Silêmanî, li Parka Nalî bi beşdariya endamên dezgehên jin û ciwanan û mamosteyên olî yên ji Rojhilatê Kurdistanê çalakiyeke şermezarkirinê pêk hat. Di vê çalakiya ku girseyeke mezin a ji gel jî piştgirî dayê de dewleta Îranê hate rûreşkirin û peyamên piştgiriya gelê Mahabadê hatin dayîn. Li Paytexta Herêma Kurdistanê Hewlêrê jî li Parka Şanîdar bi heman mebestê, bi beşdariya kom û kesên endamên dezgehên sivîl û girseyek mezin ji gel çalekî hate lidarxistin.



Piştî rûdana bûyera xwekuştina Ferînaz Xusrevanî û çalakî û bûyerên bertekî ji partî û dezgehên perçeyên din ên Kurdistanê jî bertekên nerazîbûnê berz bûn.

## Li Bakur çalakiyên rûreşkirina Îranê

Li Bakurê Kurdistanê jî piştî ku bi ser medyaya civakî, bi taybet bi ser facebook û twitterê ve peyamên rûreşkirina dewleta Îranê û piştgirîdayîna keça kurd Ferînaz Xusrewanî û gelê Mahabadê zêde bûn şaredarî, partiyên siyasî û dezgehên sivîl jî bi daxuyaniyên nivîskî û bi çalakiyên bertekî hêrsa xwe der kirin. Li Amedê li Ofîsê bi beşdariya Hevşaredarên Amedê Fırat Anlı û Gültan Kışanak, nûnerên gellek dezgehên sivîl, nûnerên dezgehên jinan û girseyeke mezin ji gel çalakiyeke daxuyaniyî pêk hat. Di daxuyaniyê de dewleta Îranê hate rûreşkirin û drûşmên piştgiriya gelê Mahabatê hatin berzkirin. Her wiha ji Partiya Herêmên Demokrat (DBP) û Partiya Azadiya Kurdistanê (PAK) jî di derbarê mijarê de peyamên nivîskî hatin belavkirin. Di peyamên partiyan de helwesta li dij Ferînaz Xusrewanî ku bû sedema xwekuştina xwe û xwedîlêderketina endamên îstixbaratê ya Îranê hate rûreşkirin û piştgiriya ji gelê Mahabadê û Rojhilat re hate destnîşankirin. Li Bakurê Kurdistanê ji bilî Amedê li bajarên Sêrt, Batman, Wan, Qoser û Agirî jî ji alî partiyên siyasî yên HDP, PAK û dezgehên sivîl, bi heman mebestê çalakî hatin lidarxistin û dewleta Îranê hate rûreşkirin.

## ‚PDK-Î û Komele Pêşmerge ji bo Mahabadê verêkirin'

Piştî ku li Mahabadê vê bûyerê rû da, gelê Mahabadê dest bi xwepêşandanan kirin û ji çar aliyên Kurdistanê bertek hati nîşandan, di hin malperên nûçeyî yên kurd de hate angaştin ku Partiya Demokrat a Kurdistan-Îran (PDK-Î) û Partiya Komeleya Kurdistan 1800 Pêşmergeyên xwe ber bi Mahabadê ve verê kirine. Lê belê Çalakvanê Mafê Mirovan û endamê Dezgeha Mafê Mirovan a Şaxê Kurdistanê Azad Mahabadî ji BasNûçe'yê re ragihand ku ev agahî ne PDK-Î û ne Komele û ne jî PJAK'ê heta niha, di derbarê vê rûdanê de tu daxuyanî nedane, ev angaşt piştrast nekirine û ew nizanin ku ev dezgeha hanê van agahiyan ji ku derê werdigire. Mahabadî diyar kir ku hemû hêz û partîyên kurd ên Rojhilatê Kurdistanê di derbarê çalakiyên li Mahabadê de daxuyaniyên piştgiriyê belav kirine û hin ji wan banga tevlîbûna çalakiyan kirine lê belê di derbarê van agahiyan de heta niha ew bi tu awayî agahdar nebûne. Mahabadi her wiha ragihand ku di derbarê çawaniya bûyera xwekuştina keça kurd Ferîzan Xusrevanî de jî heta niha ne ji alî dadgeh û berpirsên asayîşî yên dewleta Îranê û ne jî ji aliyên kurd ve agahiyên têr nehatine dayîn û pêwîst e ev bûyer bê zelalkirin û sûcdar bêne darizandin. Azad Mahabadî got: "Bêguman mafê herkesî heye ku bi şêweyeke şaristanî li hember astengî û pêkutiyên ne mirovî bertek nîşan bide û di çarçoveyeke şaristanî de daxwazên xwe bîne ziman. Ji ber nezelaliya vê bûyerê ev çalakî, çalakiyên mafdar in û divê bê piştgirîkirin" Mahabadî balê kêşa ser daxuyaniya waliyê bajarê Ûrmiyeyê ku gotibû; 'Ev van çalakiyan girîng nabînin û ji ber wê yekê di mudaxeleyên hişk nakin' û got: "Berpirsên dewletê van çalakiyan wiha binirxînin jî tê angaştin ku kuştî û gellek birîndar hene, gellek kes hatine destgîrkirin û ev bûyer ne bûyerên piçûk in. Heta agahî têne ber destên me ku hejmara birîndaran hin zêdetir e û gellek kesên birîndar hene ku ji bo nekebin destê rejimê naçin nexweşxaneyan û li malên xwe têne dermankirin."

# Plana DAIŞ'ê: Bi Boko Haram êrîşa Kobanê



Çimen Gümüş

Piştî ku hêzên kurd li Kobanê li dij DAIŞ'ê şerekî dijwar pêk anî û bi ser ketin, bi vegera Pêşmergeyan re Kobanê dîsa bû hedefa plansaziya êrîşên nû. 4 meh piştî rizgarkirina Kobanê, bi vegera Pêşmergeyên ku ji bo alîkariyê çûbûn Kobanê re DAIŞ bi hemû hêza xwe dîsa berê xwe da Kobanê. Hate ragihandin DAIŞ'a ku vegera Pêşmergeyan wek fersend dibîne, bi endamên Boko Haramê ku ji Afrîkayê anîye hewl dide ku li dij Kobanê êrîşeke mezin pêk bîne.

DAIŞ'a ku di 15'ê Îlona sala çûyî li ser Kobanê dest bi êrîşeke dijwar kir, piştî şerê 4 mehan di 26'ê Çileyê de bi şikendineke mezin ji Kobanê hatibû derxistin. Pêşmergeyên ku di 28'ê Cotmeha 2024'an de derbasî Kobanê bûn bi dorê nobedariya Kobanê dewrî hev kiribûn. Piştî rizgarkirina Kobanê Hikûmeta Tirkiyeyê, şandina çek û cebilxaneyên ji bo Pêşmerge, li gel hemû hewldanên dîplomatîk rawestand û piştî demeke dirêj Pêşmergeyên Kurdistanê ji ber bê cebilxane man ji bêçarî vegeriyan Herêma Kurdistanê.

Di 29'ê Nîsanê de piştî ku Pêşmerge vegeriyan Herêma Kurdistanê, DAIŞ'a ku vê valahiyê wek fersend dibîne, bi hemû hêza xwe êrîşê Kobanê dike û hewl dide ku ji başûr ve ber bi Kobanê biçe. Zêdebûna van êrîşan nîşan didin ku gefa li ser Kobanê û kantonên din ên Rojava hê jî dom dike.

Fermandarê Yekîneyên Yekem ên Pêşmerge yên ku li derbasê Kobanê bûbûn Sergeneral Kahir Doskî ragihandibû ku tu plansaziyeke Pêşmerge ya vegerê tunebûye, lê belê ji ber ku cebilxane û teqemeniyên Pêşmerge qediyane, bêçar mane ku vegerin. Doskî diyar kiribû ku li gor peymana ku bi Tirkiyeyê re hatibû kirin, wê Pêşmerge tenê ji bo rizgarkirina Kobanê derbas bibûye û piştî rizgarkirinê wê vegeriyana û anîbû ziman ku piştî serkeftina hêzên kurd, Tirkiyeyê pêşî li şandina çek û cebilxaneyên ji bo Pêşmerge dabû rawestandin. Doskî diyar kiribû ku Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî ji bo qanîkirina Tirkiyeyê pir helwestiyabû lê belê Tirkiyeyê vê yekê erê nekiribû.

Pêşmergeyên ku di pêvajoya mayîna li Kobanê de 130 ton çek û cebilxane bikar anîbûn, li gor peymanê bi çekên ku bi xwe re biribûn Kobanê vegeriyabûn Başûrê Kurdistanê. Beriya ku Pêşmerge derbasî Kobanê bibin, hemû gund û ji sedî 85'ê Kobanê ketibûn destên DAIŞ'ê û bi hevkariya hêzên kurd piştî şerekî dijwar Navenda bajar û ji sedî 80 gundên Kobanê ji DAIŞ'ê hatibûn paqijkirin.

Zêdebûna êrîşên DAIŞ'ê ên piştî vegera Pêşmerge diyar dikin ku xeteriya li ser Kobanê hîn jî didome. Geşedana tirsnak ew e ku DAIŞ bi derfetên kontrolkirina Raqqa û Cerablûsê, ji van bajaran yekîneyên xwe arasteyî bejahiya Kobanê dike û bi vî awayî amadekariya êrîşeke mezin û berfireh dike.

Tê payîn ku Tirkiye, bi derxistina Pêşmerge ya ji Kobanê, hewl dide ku hêzên kurd bêçar bike da ku bi Artêşa Azad a Sûriyeyê re hevkarî bike û ew îmaja ku Tirkiye piştgiriya DAIŞ'ê dike berovajî bike. Her wiha tê gotin ku vegera Pêşmerge ya ji Rojava rewşeke xeternak derdixe holê, DAIŞ jî dixwaze vê valahiyê wek fersend bikar bîne û êrîşên xwe yên li ser hêzên kurd zêde bike. Çavdêrên herêmê li ser helwesta Tirkiyeyê vê nirxandinê dikin ku 'Tirkiye bi rawestandina şandina çek û cebilxane û vegerandina Pêşmerge li herêmê dest bi kiryarên nû û qirêjî dike' Tê gotin ku bi pêkhatina van êrîşên DAIŞ'ê egerî heye ku Kobanê dîsa vegere wan demên xwe yên şerê giran û bikebe bin xeteriyeke nû. Di hin nûçeyên ajansan de tê gotin ku bi perwerdekirina komên çekdar ên hêzên muxalîf, Tirkiye hewl dide ku bajarên wek Til Ebyada li ser sînorê xwe û Cerablûsê têxe bin kontrola xwe û ev helwesta Tirkiyeyê rasterast bi geşedanên dawî yên ku li Sûriyeyê rû didin ve têkildar e.

Di van nûçeyan de tê gotin ku rewşa şerê li Sûriyeyê niha pir tevlîhev e, berpirsên tirk li bakurê Sûriyeyê YPG, Artêşa Azad û DAIŞ jî di nav de, bi gellek hêz û komên çekdar re hevkariyan dike û ger ku çareseriyeke stratejîk neyê afirandin wê rewş ber bi xerabiyê ve biçe. Bi taybet şerê ku li Til Ebyadê tê kirin tenê rizgarkirina Rojava yan jî aramkirina sînorê fermî yê navbera kantonên Rojava pek nayîne, di heman demê de yekkirina nexşeya Rojavayê Kurdistanê û li gel Kantona Cizîrê, rêvekirina Kantona Kobanê ya ji bo Başûrê Kurdistanê jî pêk tîne û ev yek ji bo siberoja kurdan pir grîng e.

## Pêwîstî hebe Pêşmerge dîsa dikare biçe Kobanê

Weke tê zanîn Yekîneyên Pêşmerge piştî ku 5 mehan li Kobanê li gel hêzên kurd şer kir û piştî rizgarkirin û mîsogerkirina parastina Kobanê vegeriyabû Başûrê Kurdistanê. Fermandarê Yekîneya Piştgiriya Kobanê ya Hêzên Pêşmerge Ahmed Gerdî, diyar kir ku Pêşmerge erka xwe ya Kobanê bi serkeftî pêk anî ye û got: "Armanca sereke ya Pêşmerge rizgarkirina Kobanê bû. Bi tekoşîneke bêhempa ya gel û hêzên kurd, Kobanê neket destê DAIŞ'ê" Gerdî da zanîn ku di 5 mehên ku Pêşmerge li Kobanê li gel hêzên kurd, li dij DAIŞ'ê şer kir de, tevahiya bajarê Kobanê û ji 180'yan zêdetir gundên wê hatin rizgarkirin û dom kir: "Ger ku li Rojavayê Kurdistanê gefên li ser kurdan zêde bibin, wê Hêzên Pêşmerge ji bo rizgarkirina kurd û Kurdistanê dîsa biçine Rojava"

## Ji DAIŞ û Boko Haram amadekariya êrîşkirina Kobanê

Piştî vegera Pêşmergeyan jî li Kobanê têkoşîna bi DAIŞ'ê re berdewam e. Hat ragihandin ku DAIŞ'a ku bi beşdariya endamên xwe yên biyanî û çekên giran beriya çend rojan li nêzikî Bendava Tişirînê ya li başûrê Kobanê hêzeke xwe civandibû li vir derbeyeke giran ji YPG'ê xweriye lê dû re dîsa dest bi amadekariyan kiriye ku komeke mezin ji endamên Boko Haram jî li wê derê ye. Li aliyê din jî ji gundên Kobanê ji sedî 95 ji DAIŞ'ê hatin rizgarkirin û xebatên avadaniyê jî bê navber didomin. Hat diyarkirin ku li navenda bajêr talûkeya DAIŞ'ê bi temamî hatiye bertereFkirin lê gefên êrîşkirina wan hîn jî didomin. Cîgirê Wezîrê Bergiriyê yê Kobanê Öcalan Îso diyarkir ku Boko Haram a ku li Afrîkayê şer dike jî bi hêzeke mezin li nêzikî Efrînê hatiye bi cîh kirin û ew jî bi alîkariya DAIŞ'ê alîkariya êrîşan dikin. Îso wiha domkir, "Boko Haram ku 60 kîlometre li nêzikî Kobanê xwe bi cîh kiriye di nava wê hewldanê de ye ku bi ser Menbîc a bi ser Helebê ve ye re Kobanê dorpêç bike. Li gor agahiyên ku tên li wê derê hêza xwe berhev dikin û amadekariyên ku ji wir ve êrîşî Kobanê bikin." Her wekî din Îso anî ziman ku YPG'ê hêza xwe ya li hemberî DAIŞ'ê îspat kiriye û bi saya berxwedana YPG'ê DAIŞ dê nikaribe tu êrîşên xwe bigihîne dawiyê.



## Gundên ereban ên li dora Kobanê

Îso ku da zanîn ku tekane derfeta ku DAIŞ karibe êrîş bike gundên ereban ên li derdora Kobanê ne axaftina xwe wiha domand, "Em nikarin bibêjin ku hemû rêyên ku diçin aliyê DAIŞ'ê hatine girtin û rêya alîkariya bi wan re hatiye girtin. Gelek dewlet alîkariya DAIŞ'ê dikin. Hîn jî piştgiriya çekî û ya bi her awayî digihîje destê wan. Pirsgirêk li vir tenê ne xilaskirina Kobanê û gundan e. Heta ku gundên ereban yên derdora Kobanê ku piştgiriya DAIŞ'ê dikin neyên paqişkirin ew talûke jî dê bidome."

## 'Tirkiye'yê rê ji derbaskirina teqemeniyê re girt'

Herwiha Îso piştgiriya Pêşmerge ya li gel Kobanê jî weke watedariyeke mezin bin av kir û wiha pê de çû, "Bo me tiştê girîng hebûna hemû hêzên kurd ya li vir bû ku wan mil da hev û li hemberî DAIŞ'ê şerekî dijwar meşandin bû. Ya girîng ew rihê yekîtiyêbû. Di rojên dawîn de Pêşmerge li vir bê teqemenî ma ji ber ku Tirkiye'yê rê li ber hatina teqemeniya ji Başûr girt. Ew jî neçar man ku vegerin Başûr. Her çiqas ku Tirkiye'yê astengî danîbe ber gîhandina teqemeniyê jî Rêveberiya Herêma Kurdistanê dikarî ku tevî vê jî teqemeî bişanda û Pêşmerge hinekî din bima."



Piştî vegera Pêşmergeyan li Kobanê têkoşîna bi DAIŞ'ê re didome

## Gelê Hasekê li hemberî DAIŞ'ê baldar e

Li aliyê din êrîşên DAIŞ'ê bêyî Kobanê li gelek cihên din jî didomin. Li aliyê Cizîr û Hasekê jî hewldan û êrîş berdewam in. Beriya çend rojan DAIŞ'ê li taxên kurdan ên li Hasekê bi çalakiya xwekuştinê bû sedema mirina 5 welatiyan û di bûyerê çend çalakvanên DAIŞ'î jî hatibûn kuştin. Li aliyê din tê gotin ku DAIŞ bo ku karibe kontrola bajêr bixe destê xwe hêzên xwe yên li Deyrezor'ê jî arasteyî Hesekê dike. Endamê Rêveberiya Hesekê Sûad Xalo jî bal kişand ser mijarê û da zanîn ku ji destpêkê vir de DAIŞ'ê gelek caran xwestiye ku bajarê herî stratejîk Hesekê têxe destê xwe lê ew yek pêk nehatiye û êrîş jî her berdewam in. Xalo anî ziman ku bi vê minasebetê gelê bajêr her tim baldar e û bo ku rê li êrîşan bê girtin jî amadekariyan dike. Xalo wiha got, "Gelê meyî vir xwediyê bîr û baweriyeke xurt e. Em hemû hewl didin ku xwe û bajarê xwe biparêzin. Yan emê bi hev re li ser xaka xwe hebin, yan jî emê bi hev re tune bibin. Yan ewê me ji vir derxin, yan jî emê wan li her derê têk bibin. Bo vê jî amedekariyên me bi salan in didomin."

## Li Hasekê hevkariya ereb, sunne û kurdan

Xalo di derheqê hevkariya gelên li bajêr de jî agahî dan û wiha domkir, "Heke ku li vir şerek derkeve wê hemû kom û derdor zirarê bibînin. Bo vê jî piraniya gel bi me re ye. YPG an jî hêzeke din, heke kî wan biparêze ew jî piştgiriya wan dikin. Em dikarin bibêjin ku li vir di navbera kurd, ereb û suryaniyan de hevkariyeke baş heye. Hasekê 3 bêş e. Bêşek kurd, bêşek hêzên rejîmê ye û bêşek jî alîkariya DAIŞ'ê dike. Bêşek ji ereban di bin kontrola DAIŞ'ê de bêçare maye. Li wê herêmê jî rewşeke tirsnak araste ye. Bo vê jî gelê vê bêşê nikare bi rehetî tevbigere."

## 'Armanca DAIŞ'ê derbekirina destkeftiyên Rojava ye'

Xalo di axaftina xwe de destnîşankir ku ji ber ku DAIŞ'ê têkçûna xwe ya li Kobanê bariste nekiriye û bo vê jî lezê dide êrîşên xwe yên li hemberî kurdan û wiha domkir, "Ez ne di wê baweriyê de me ku DAIŞ di armanca biserketina li Kobanê de ye. Tekane armanca wan ew e ku derbê li destekeftiyên kurdanxin. DAIŞ'a ku li hemberî hêzên kurd ên leşkerî têk çû pişt re destpê kir û ket nava gel û bi çalakiyên xwekuştinê êrîş pêk anîn. Bi têkçûna xwe ya rihî êrîşî kurdan dikin. Di nava bêçaretiyê de ne û nizanin bê ka çi bikin."

## Li ser sînor skence li Efrîniyan tê kirin

Li Efrîna ku bi herêmên din ên kurdan re girêdana wê nîn e û cihê herî dûrî navendên din e jî jiyan di rewşeke normal de didome. Lê belê gelek kesên ku ji ber şer cihên xwe terikandibûn û bo xebatê derbasî Tirikye'yê bibûn li ser sînor gefa girtin û skenceyê rû dide. Piştî ku beriya çend rojan Bekir Seîdê 24 salî yê Efrîni li ser sînor bi guleyên leşkerên tirkan hatibû qetilkirin vêcarê jî ciwanekî dinî kurd bi heman hincetê li nêzikî sînor kuştî hate dîtin. Wezîrê Bergiriyê yê Efrînê Ebdo Îbrahîm têkildarî mijarê da zanîn ku li ser sînor gelek bûyerên bi vî rengî diqewimin û nexweşxaneyên herêmê ji birîndarên ku ling, dest û hestiyên wan bi skenceyê hatine şikênandin tije ye. Îbrahîm wiha domand, "Miletê me bo ku bixebitin û karibin li malbatên xwe mezebikin diçin wî alî. Tevî girtin û desteserkirinên dewleta tirkan li aliyê din jî skeneceyeke hovane li hemberî gelê m edimeşînin. Ew nêzikahiyeke dijiminatiyê ye. Em vê yekê wek nêzikahiya dewleta tirk a li hemberî şoreşa Suriye'yê dinirxînin. Ew nîşaneyeke. Ew nêzikahiyeke taybet ya hikumeta Tirikiye'yê ye. Heger ku li gor hiqûqa wan girtin divê, ila bigirin lê bila dev ji skencekirinê bedrin. Ew ne bûyerên munferît in û her ku diçe ew pêkhate zêde dibe. Divê yekser ew pêkanîn bê rawestandin."

## 'Hewl didin ku Efrînê bikêşin nava şer'

Îbrahîm diyarkir ku ragêşiya ku bi sedema girtina jineke mixalîf a ji aliyê YPG'ê ve ya ku di navbera YPG û mixalefeta Sûrey'yê de derketî hatiye çareserkirin lê îddiayên ku skence li wê hatî kirin jî derewand. Herwiha Îbrahîm ragihand ku komên dinên çekdar li hemberî YPG'ê tifaqek pêk anîne lê piştî ku ew mesele eşkere bûye jî wan koman lêborîn ji YPG'ê xwestine û wiha pê de çû, "Ew jin weke haceta propagandayê bakaranîn. Ew mesele ASA'yê anî vê astê. Bi saya vê meseleyê xwestin kul i Helebê şerekî derxin. Ji ber ku ew dixwazin şer ji Helebê derbasî Efrînê bibe. Ez serkeftinê ji ASA û komên din ên ku bo jinekê hatine ba hev dixwazim. Lê em dizanin ku ew bo jinekê tiştekî wiha nakin. Li hemberî pêkhateyên heman ên li hemberî kurdan qet dengê xwe dernexin. Em ji vê meseleyê vê famdikin. Wan plana êrîşkirina li Şêxmaksûtê diikir. Lê piştî ku wê jin û malbata wê rastî vegotin plana wan pûç derket. Pişt re jî lêborîn xwestin û dan zanîn ku ewê ji vir pêve di avêtina gavan de baldar bin. Ew tenê şer dikin. Ku kîjan kesên ji derev çi dibêjin wê bi cîh dikin. Komên ku Tirkiye û Erebistana Siud piştgiriya wan dikin hene. Tekane daxwaza wan ew e ku hemû kantonên Rojava bizivirin qadên şer. Dixwazin hemû weke Kobanê bibin. Dibên çima gelo heta niha li Efrînê şer neqewimî ye. Em dizanin ku hemû plan jî bo derxistina şerekî li Efrînê ne."

## YPG'ê bîlançoya meha Nîsanê ragihand

Li aliyê din Navenda Ragihandinê ya YPG'ê jî bîlançoya meha Nîsanê eşkere kir û da zanîn ku 45 operasyon pêk hatine û di encamê de jî 497 endamên DAIŞ'ê hatine kuştin. Li gor daxuyaniya navendê gelek endamên DAIŞ'ê jî birîndar hatine girtin û li çend cîhan jî teqemeniya wan hatiye desteserkirin. Li gor daxuyaniyê di pêvçûnan de 62 endamên YPG'ê jî jiyana xwe jidest dane.

# Vengê royê Feratî û vengê Çemê

**Nadire Güntaş Aldatmaz**
**Zelal Mevlütoğlu**

Hewteyo verên ma Qadîr Buyukkayayî de qisey kerdîbî no hewte zî Mikaîl Aslanî de albumê înan "Vengê Royî" ser o qisey kerd.

Mikaîl Aslan bi albumanê xo yeno naskerdene. Albumanê eyî de heme mintiqayanê kirmancan ra kilamî estê. Labelê na rey temamê albumî bi kilamanê Sêwregi virazîyo. Ey be Qadîr Buyukkayayî ra xebatade zaf erjayaye kerda. Bi na xebata xo înan zerrîya şarê ma de cayê xo girewto. Qadîr Buyukkaya seba Mikaîl Aslanî nîya vano: "Deza Mikaîl tena hunermendêno gird nîyo, o eynî wext de Derwêşêkê nê zemanî yo." Ma zî eynî nîya fikreyenê. Her diyîne kî zerrîya ma nêşikite, cewabê persanê ma dayî. Ma înan rê zaf sipas kenîme. Raya înan akerdeye bo!

**Birêz Aslan, ti timûtim bi xebatanê (gureyanê) xo yena rojeve. Qandê cû (coka) şarê mayo ke bi kirmanckî/dimilkî eleqedar o, bitaybetî şarê mayo dêrsimîj to rind nas keno ancî zî ti eşkenî seba wendoxanê ma tenê xo bidayê naskerdene?**

Ez serra 1972 de Xozat de amune dînya. Waxto ke bandora(cunta) Kenan Evrenî bîye hukmat ma rê zaf zulm û heqeret kerd. Ma zulmê hukmatî ver bar kerd şîmê Qeyserîye, uca de misayibê pîyê mi estbî. Mektebo mîyanen û lîse mi uca de wendî. Aye ra tepîya seba Unîversîte ez şîyo Meletîye. Meletîye de mi di serrî Matematîk ser o wend, hama uca de kî ez rehet nêvinetu. 1994 bî, ez kotu wertê hereketê talebeyan. Kotu qewxa, heştê (hewteyê) hepis de mendu, îdareyê unîversîte ez unîversîte ra estu teber. Aye ra tepîya ez remu şîyu Almanya, çike waxtê eskerîye amay bî. Mi Alamanya de îltîca kerd.

**Ti kilamanê Dêrsimî û yê Çewlîgî ra dima na rey zî kilamanê Sêwregi ser o xebityayî. To destpêkerdena na xebate rê senî qerar da? Ti eşkenî fikr û demê dest pêkerdîşê na xebate ra behs bikerê?**

Mi albumê xoyê sifteyînî "Agêrayîş" de kî hetê Pîranî ra deyrî vatî, ju kî "Agêrayîş" de ju helbesta Mamosta Malmîsanijî "Ganfîdayê Dêrsimî" mi wendî bî. Ez ke şîyu Alamanya qampê îltîca de mi ju lacek naskerd, nameyê xo Mahmud bî, Pali ra bî. Ma jubîn de zazakî qesey kerd, mi ci ra pers kerd vat "To çaye zonê ma qesey kena ? Ey kî mi ra pers kerd vat "To çaye zonê ma qesey kena? Ma huyaymê... Mi vatêne qa zonê ma xora ju Dêrsim de yêno qeseykerdene. Bira Mahmutî kî belkî henî fikir kerdêne, nêzon... Yanê çi rind ke ez şîyo Alamanya, uca de ez zaf çî muso. Şindorê zonê ma zaf hîra bî û mitiqayê ke têy zonê ma yêno qeseykerdene pir bî hama mi nasnêkerdêne. Tam vîst serrî yo ez fekê mintiqaunê bînan ser o gureyen û wazon ke nas bikerî. Hona kî mi bas nêkerdo. Fekê Mutkî nasnêkone, ê Gergerî û ê xeylê cawu hona nas nêkone. Ma ke fekê zonê xo nas nêkerdî, temamê fotografê zonê xo nêvînenîme, her kes fekê xo ya nêmcet maneno. Serru ra 1995 bî, mi wastêne bi zonê ma çiqa kitabî estê pêriyno tederik bikerî û biwanî, mi bixo kî helbestî, makaleyî û kilamî nusnayêne. Mi ke repertuarê xo seba "Agêrayis"î hazir kerd, deyîrê Pîranî kî kerdî ci. Mi vatêne ez gereku fekê înu kî bimuşî û fekê înu ra kî vacî. Hewesê mi têê o waxt ra eştîbî. Coka mi her albumê xo de, çiqa ke despera mi amê fekê corî û fekê cêrî ra kilamî, deyrî, lawkî û şuwarî vatî. Ama hewesê mi dayîna girs bî. Mi vatêne ez gereku ju albumê xo pêro bi fekê Çewlîgî ra hazir bikerî. Seyîdxan Kurijî seba fek û deyîranê Çewlîgî mi rê zaf yardim kerd, çi hêf ke mi dest de mataryalî kêmî bî. Yanê fikrê mi zerê mi de mand, heta ke mi Qadîr Buyukkaya nas kerd. Rocê amê, mi deza Qadîr Buyukkaya naskerd, ey mi rê kêberê Sêwregi kerd ya, ez baxçeyê xo de kerda meyman. Fikrê mordemî ke bî kamil Heq ci rê kêberê nano pira. Saîr û nustoğ Qadîr Buyukkayayî mi rê xeznade kane arde û ez gulîstanê xo de kerda meyman. Mi gulîstanê ey de vengê Necmettîn Buyukkayayî hesna, vengê Demen û Suwarî hesna, Vengê Royî hesna. Ebi deyiranê êyî albumê ma "Vengê Royî" vecîya meydan. Qadîr Buyukkaya ke mebîyêne fikrê mi zerê mi de mandêne, sayîya ey de fikrê sereyê mi bî kamil û sayîya ey de ez serê Sêweregi ra zê teyrî pero ra.

**Wexto ke qalê Sêwregi bî, o wext nameyê Yilmaz Guney yeno vîra merdimî. Derheqê Sêwregi de yew anektodê eyî nîyar o:**

"Rojê mi ra pers kerdî, va ti kotî ra yî? Mi va pîyê mi Sêwregij o. Nameyê Sêwregi rê şaş bî, qet pênêhesîyaybî. Va, kotî der a na Sêwregi? Mi va, Sêwregi qezaya Napolî ya. Xeylê fikrîyayî û yewbinî de nîyada va, ma İtalya zaf rind zanê, xeletê to çin bo, qezaya Napolîya winasî çin a. Eke Sêwregi İtalya de bîyêne înan do bizanayêne, Sêwregi qezaya Riha bîye, Riha zî şaristanê Tirkîya bî. Merdimê welatê ma rind ê, aqilê înan



bol o. İtalya zanê, Fransa zanê, Çînîstanî zanê, bêvanîstanî zanê. Labelê welatê xo nêzanê. Seba ardimê welatanê bînan (ê ke kişta bîne yê dinya der ê) can danê, seba înan şîîran nusenê, qandê înan şîn kenê. Kitabê ke dejê dewijanê Falanîstanî tede nusiyayi yo, dest ra be dest fetelnenê. Şarê welatê mi rê piştîya xo açarnayî ya, înan nêvînenê, nêşîkînê înan bivînê."

**Ti zî zana no anektod ra dima şarê ma zaf raye girewta. Ewru êdî her kes welatê ma heta be dewanê ma nas keno. Ma wazenime ke pers bikerîme gelo durum seba ziwanê ma zî wîna yo? Ti derheqê xebatanê ziwanê ma de çi fikrîyenî?**

Ma se vacî, ez henî guman kone waxtê Yilmaz Guney dayîna zor bî, coka no drum tenê kî zerê mordemî dezneno. No anektod de Yilmaz Guney se vano ez zaf rinda famkone. Waxtê ey de keşî belkî zonê ma de ju makale bîle nênusnaybî, tabî ke tay estîbî zê Said Kirmizitoprakî, zê Necmettîn Buyuykkayayî. Hama di-hîrê tenî bî. Keremê Heqî sukur ke nika zonzanoxê ma estê, kitabî, kovar û perlodê ma estê, unîversîteyan de kursîyê ma estê. Nika ma zonê xo ser o, fekanê zonê xo ser o û zonê standartî ser o munaqeşe kenime û sanenîme têver. No het ra drumê ma ê waxtan ra dayîna rind o. Ama çîyode bîn esto ke serê moredemî zaf dezneno; ê waxto de xort û kenekonê ma zerê kêyan de zon musayênê û îno rê royê zonî eskera bî. Hama nika genconê ma zon xo vîr ra kerdo, ya kî amê sukê uca de binê tesîrê zononê bîno de mandê, zonî kutê têmîyan. Rasta, qeyret kenê musenê hama kêmî yo. Binê na mesela ra çiton vecinîmê nêzon, yanê barê ma giran o. Ju kî ez ruyê konseru ra suke bi suke gêrone. Qoçgîrîye ra heta Sêwregi, çi hêf ke sarê ma domananê xo de zonê xo qesey nêkeno. Domanu ke zon qesey nekerd o zon mireno. Domanî can danê zon. Gorê fikrê mi wertê 20 serru de zonê ma vîndî beno. Hama ju sansê ma esto, o kî mekteba de ebi zonê ma egitim (perwerde) o. Zobîna sansê ma çin o. Domanî ke mektebu de zon bimusê o waxt onca zon beno cinde.

# Muzirî nê albumî de resayî pê

**Ti kilamanê xo bi fekanê heme kirmanckî/dimlî vanî. No wazîyet zî eleqayê şarê ma hîna vêşî anceno. Fekan yewbinî ra keno nêzdî, şar yewbinî hîna weş fam keno. Ma na mana de xebatanê to zaf muhîm vînenime. Ti do nê xebatanê xo rê dewam bikerê?**

Nay ra 15 serrî ravêr mi ke bi fekê Piran û Amedî ra albumê xo de deyrî vatî, tayê hunerkaranê Dêrsimî mi rê serevde kerd, vatî "ti zonê ma xerepnena". Nino vatêne qa mi bi xo zon henî vurno, yanê nêzanê zonê ma a het de henî yêno qeseykerdene. Mi kî înu rê va ke, "Mi nêxerepno, înu çiton vato mi aynî henî vato". Yanê Dêrsim ra teber zon nêzanê ya kî qebul nêkenê, no fikro kanperest çi hêf ke hetê Çewlîg û hetê cêrî de kî esto. Kes keşî qebul nêkeno, her kes vano o bîn xelet qesey keno. Çi rind ke mi bi fekanê bînan ra deyîr û lawkî vatî, sarê ma jubîn ra xeberdar bî. Ez henî guman kone mi heta nika albumanê xo de xeylê mintiqawu ra kilamî vatî û ez wazone nîya dewam bikerî karê xo dayîna xorî û zalal kerî. A bi xêr!

**Verî ra fekê Sêwregi dêrsimîjan rê xam ameyêne yan zî fekê Çewlîgî sêwregijan rê xam ameyêne. Labelê bi xebatanê to kirmancî fekê mintiqayan şinasnenê, yewbînan fam kenê. Çarçewaya no wazîyetî de standardîzasyonê kirmanckî ser o ti çi fikrîyenî?**

Ez vacî kovara Vate de bî, mi standardize ser o nusteyêde Nadire Güntaş Aldatmaze wend, fikrê xo wes bî. Ez bixo zonzanox nîyo, hama zonê ma kotî de, çiton yêno qeseykerdene û çiton yêno nustene teqîb konê û wazon ci ra bimuşî. Gorê fikrê mi kî zonode standart lazim o. Na het ra ez kar û gurê komela Vateyî rind vînone. Hama beno ke tayê kî zobîna fikir kenê, ma gune zere hîra û comerd bime. Karê standardîze de taqiz tayê problemî kî peyda benê. Ma ke ju kilama kane gurete û tenê modernîze kerde, beno ke hetê otantîkî ra mane û germîya xo tenê biremo. Standardîze kî çîyode nîyaneno. Zono ke standardîze beno hetê otantîkî ra tenê beno serdin hama na mesela xora standardîzekerdîşê her zonî de vecîna. Coka hetê ra zonê standartî ser o bigurîme, hetê ra kî feku rê wayîr bivecîmê û biseveknîme, germîya feku zobîna wa. Ebi na qisawete ma tayê havalî amayme têlewe û ju perlode(koware) vete, perloda "MA". Perloda "MA" de her kes gorê xo nusneno, her kes çiqa zano henî nusneno. Înay ke zonê ma de nusnenê xora zaf senikî yê, ma motîvasyonê înu gereku bi şindoran mesiknîme. Tayê perloda "MA" de bi alfabeya Bedîrxanî, tayê bi alfabeya Jakobsonî tayê kî gorê xo nusnenê û vanê "nusteyê mi redakte mekerê". Înu kî qebul kenîme. Çaye ? Raştî kî sarê ma ra zaf kes hona nêzano ke zonê ma çiton yêno nustene. Bixo va perloda "MA" de bivenê û qerarê xo bidê. Tabî kî hedefê ma folklorîk o, ma wazenîmê her kes bi fekê xo binusno û sarê ma fekanê bînu kî nasbikero. Mîsal, mordem Perloda "MA" de fekê Gimgimî kî nas bikero, ê Mutkî kî. No çîyode normal o. Çike zonê ma de tarîxê nusnayîşî hona zaf newî yo. Tayê havalonê ma perlode nêgurete, vatî "Sima bi alfabeya Bedîrxanî nênusno, ma perlode negênîme." Eslê xo de bi alfabeya Bedîrxanî kî tey nusteyî estê. No hukim hukmode xelet o. Nay ra des serrî ravêr kamî bi alfabeya Bedirxanî nusnayêne? Kêyê mi de arşîvê vîst serru esto, ez henî zone vist serrî yo bi zonê ma zaf kitabî, perlodî, helbestî û makaleyî vecîyê. Nîno ra xeylê tene bi alfabeya Jakobsoni amê nustene, taynu kî gorê xo nusno. Nî serronê peyêno de bi alfabeya Bedîrxanî kitabî û kovarî zedîyayî. No çîyode zaf rind o û tarîxî yo, hama gereko mordem ê verêno meerco pê goşî. Taye estê hetê polîtîk zaf tujî yê, zirarê îno ma rê zaf o. Siroke perloda "MA" veciyê, Çewlîg de ju naskerdoxê mi perlode girota berda Egitim-Sen. Des têni uca de nê be ro. Vano, ez heftê ra tepîya şîyo Egitim-Sen, ju malimî des tênî perlodî pêyser ardî day mi û mi rê vat ke ""Î" yê sima ser o kulike çin a, coka ma nîno nêwanenîmê." No senê verhukmo, mordem çaye nîya zereteng beno. Ez vanu zon royî(ganî) ver der o, ma waxto herre biercime ser, tayîne "î" ser o derdê kulike giroto. Nî ke zere ra qeyretê zonî bikerê niya nêkene, derd û kule nîno siyaset o. Înan rind nêkerdo. No ziwan de çiqas ke materyalî estê gerek ma hemîne rê wayîr bivejîme. Mîyanê zemanî de awe raya xo vînena û ma caye de taqize îttîfaq kenîme, çike yew welat de, yew ziwan de hîrê alfabeyî nêbenê. Serra 1980 ra be nat bi alfabeya Bedîrxanî nuşteyî estê. Mamosta Malmîsanijî serra 1979-1980 de hîkayeya xo ya verêne bi na alfabe nuşta. Labelê seke ti zî vanî problemê mayo bingeyin ciwîyayîşê kirmanckî/dimilkî/kirdkî/zazakî yo. Verê cû ma gereke materyalanê kulturê xo arêdîme û înan biseveknîme, eynî wexte de zî tabî ke ziwanê xo biresnîme yew standart. Çike nuştene de ziwanode standart elzem o.

**Ma zanenîme ke ti leyê muzîk de edebîyat û folklorê ma rê zî eleqadar a. Tenê zî bahsê xebatanê xoyê edebî bike. Ti nika derheqê edebîyatî de senî kar kenî?**

Kitabê mi esto, namê xo Hayig o, çar serrî ravêr Fam Yayincilik ra vecîya. Zobîna kî ez Perloda MA de nusnone. Hama zaferî ez seba lawikonê xo helbestu nusnone.

Kitabê to zî sey kilamanê to folklorîk o. Tey tehmê mîtolojî esto, tehmê felsefeyî esto, tehmê sanikanê ma esto. Merdim wazeno ke hîna zaf biwano. Madem ti hende weş nusena, çaye dewam nêkenî?

Ez wazone bunusnî hama na serru kar û barê mi zaf giran o, seba nustene zemanê mi çin o.

**Muzîkê to, kilamê to zîyadeyê xo klasîkê kirmanckî yê? Mabênê înan de besteyê neweyî zî estê labelê înan de zî eynî hîs esto. Yanî kilamî fekê to de veng û rengê kilamanê klasîkan gênê. Ti çi fikrîyenî?**

Rast a, tayê lawikê ma hetê muzîkê modernî ra ya kî ma vacîme hetê muzîkê ...populerî ra hîssîyat gureto hama bingê xo en zêde otantîk o. Ez bi xo kî en zêde muzîkanê otantîkî ra hez kone, coka çiqa ke despera mi yêna, wazone kilamonê xo de çimê ra dûrî meşerî, royê otantîkî daymet biseveknî.

**To rengê kilamanê xoyo orîjînal nika bi fekê Sêwregi xemelno. Yanî vengê royê firatî kewto be mîyanê vengê çemê muzirî. Ti se vanî?**

Ez zaf bextîyar o, 15 serrî yo ke mi na proje xeyal kerdêne. Keremê Heqî sukur ke mi sayîya Qadîr Buyukkayayî de na proje arde meydan. Ez înam nêkone no çiyode tesadufî yo, mordemî ke zerrî ra û can ra waşt, xoza (tabîat) ci rê kêber keno ya. Coka mi hîssê xo defterê albumî de nîya ardî ra zon ; "Wusar bî; çemî(laya) bi lerze hetê Firatî ser herêkîyêne. Şenayîya gulîstanê Qadîr Buyukkayayî de vengê Demen û Suwari, vengê Necmettîn Büyükkayayî û vengê ma kewt têmîyan û bî ju. Qadîr Buyukkayayî seba(qandê) xatirê înu destur da mi, ez kêber ra giroto zere, kaleka baxçeyê êy de mi Vengê Royi hesna." Zê vatena sima çemî reştî pê.

**Ti bi zerrî û can persanê ma cewab kenî, weş war be! Ma zî waşt ke no heyecanê şima rê ortax bibîme la Sêwregi ma ra dûrî bîye, ma nêeşkîyayî beşdare konserî bibîme. Tirkîya de, şaristananê bînan de programê konserî esto? Key dest pêkeno?**

Siroke seba resepsîyonê "Vengê Royî" ez û Qadîr Buyukkaya şimê Amed û Sêwregi, uca de sarê ma zaf eleqedar bî. Ez reyna îta de zaf sipas kone. Ez henî zone bi "Vengê Royî" ma pirdode newî mabenê cerî û corî de ont. Eslê xo de no pird ma ra ravêr kî Yilmaz Guney û Necemttîn Buyukkayayî ontîbî, çi hêf ke ma rew xo vîr ra kenîmê coka ma albumê xo yadê Necmettîn Büyükkayayî kerd. Dostîna û dezayîna ke ma xeylê waxto xo vîr ra kerdîbi, ez henî zon ke bi na proje onca bîyê rez. Xêr weşîya azê ma hona xeylê waxt nê pirdî ra yêno sono, na dostîne keno qeyim.

**Ma wazenime payijî onca şîmê welat, na asme ma Hollanda, Isveç û Alamanya de resepsîyonu organîze kenîmê, a bi xêr.**

Ma bi ameyîşê şima pawenîme, berê welatî şima rê heta pey akerde yo. Şarê ma şima ra zaf hes keno, ma bawerîyê ke ê zî raya şima pawenê.



Sima kî zane hetê Sêwregi de zonê ma rê "dimilî" vanê, hetê ma Dêrsim de "kirmanckî" vanê. Sarê Sêwregi ke se vato ma henî qebul kerd. Coka ma namê albumê xo kî henî na pira; Dimili songs From Siwerek..."Dimilî" namode kan û namode taybetî yo, hetê mi ra kî ju manê xo esto: Ez des serrî bîyu, mi amika xo ra pers kerd, mi va "Esê ma kamî me?" Esê vat "Lacê mi ma kirmancî mê hama sarê teberî ma rê "dimilî" kî vano". Na çekuye sifte, mi a roce hesnê. Kam zanêne ke rocê Sêwregi de royê dimilî mi rê eskera beno... Nika kî tay sîyasetkarê ma nî namu ser o munaqeşe kenê, sanenê têver. Belkî hetê sîyasetkaru ra nî namey problem teşkîl kenê hama hetê kulturî ra mesela çin a. Va cayê de dimilî, cayê de kirmanckî, cayê de zazakî vacê, ayne zê xo taybetî û renga reng bo. Fekê her keşî xo rê şîrîn o, mi rê kî pêro şîrînî yê, pêro kî zonê ma yê. Nika bêrî persê sima; gorê fikrê mi en ferqo zêde mabenê Dêrsim û Çewlîgî de esto, yê Sêwregi mi rê qe zor nêno. Fekê Sêwregi û Çêrmûge fekê ma ra zaf nejdî yo. No naçizane fikrê min o, taqiz zonzanoxê ma dayna rind qerar danê. Mordem ke zonê xamî de kilaman vaco belkîya kar û barê xo dayna beno sifkêk. Misal hetê Sêwregi de vanê "rojê rind û weşî nêşnê mi vîr ra", hetê ma de vanê "rocê rind û weşî nêsonê mi vîr ra" Ma ke qayt kerd nî di cumleyî jubîn ra zaf nejdî yê. Ferq çiqa ke senik bo telefuz kerdene û vatene hende zor a. Yanê ti ke kurmanci vace belki dayna ret o. Ju kî bi fekê Sêwregi vatene seba mi zaf zahmetin nêbîye, seke mi cor de kî vat na het ra tenê kî tecrubeyê mi esto, ez vîst serrî yo ke bi fekê Sêwregi, Pîranî, Çewlîgî, Çêrmûge kitabu wanone.

**Önen:**

# Divê kurd di şerê med yayê de jî biserkevin

**Siwar Bedirxan**

Doç. Dr Ekrem Önen ê ku li ser medyaya kurdî gelek xebat kiriye diyar dike ku di serdema me de rola medyayê ya li ser civakê gihîştiye qonaxeke bêhempa lê medayaya kurdî ji vê qonaxê pir dûr e. Önen bal kişand ser bandora medyayê ya di demên şer de jî û meseleya Vietnamê bibîr xist da ku hin şer hene bi saya medyayê têne wendakirin an jî qezenckirin. Önen anî ziman ku medyaya kurdî hîn ji qonaxa hizbatiyê derneketiye û divê kurd jî bêhtir rojnamegerên profesyonel bigînin, yên heyî bidin xebitandin û li gor pîvanên gerdûnî medyaya xwe saz bikin.

Önen ku heta niha li gelek zanîngehan dersên kurdî jî daye û niha li Wezareta Kulturê ya Swêdê kar dike balê dikşîne ser şerê li Kurdistanê û eşkere kir ku divê kurd di warê medyayê de jî berxwedanê bidin ji ber ku neyarên kurdan tenê ne li eniyên şer in lê belê ew li hemberi Kurdistanê şerekî medyayî jî dikin. Önen pirsên me yên di derbarê bandora medyayaê û rewşa medyaya kurdî de bersivand.

**Kurdistan niha li du perçeyan bi şerekî giran re rû bi rûye. Her wiha tesîra şer li ser her sazî û dezgeha kurdan bûye. Medya ya kurdî di vê qonaxê de bi erka xwe ve rabû gelo?**

Eger em bi tevahî li medya kurdî binêrin di destpêkê de divê em li qonaxên navneteweyî binêrin. Ew qonax navneteweyî ne û li hemû welatan hene. Ezê bi kurtî behsa wan qonaxan bikim ji bo ku rewş bêhtir zelal bibe. Sê heyamên medyayê hene; medyaya partîtî heye, medyaya profsyonel heye û medyaya (conversoal) tîcarî jî heye. Dema tu li welatan temaşe dikî tu dibînî ku medyaya hizbî li gellek welatan nemaye. Li hemû welatan partî hene. Lê medya hizbî kêm e. Li cihanê bêhtir medya profesyonel û herî zêde jî medyaya tîcarî heye. Pirr heyf... bi giştî li Kurdistanê medya ya hizbî heye. Her çiqas nîşaneyên medya profesyonel hebin jî medya kurdî medyayeke hizbî ye. Dema ku em vê yekê dibêjin, divê neyê fêm kirin ku medya hizbî nebaş e û karê wê bê encam in. Eger medya kurdî hatibe vê merheleyê bi saya medya partî û rêxistinên kurd gihiştiye vê qonaxê. Weke gava din jî min got, medyaya hizbî kêm bûye. Bi taybetî li Başûrê Kurdistanê medyaya hizbî, beyî ku em bêjin êdî ne qonaxa wê ye, ew medya rê li ber pêşketina medyayê jî digire. Ew medya nahêle medya profesyonel bi pêşkeve û gav biavêje. Her tim wê fren dike.

**Di vê çarçoveyê de ji bo pêşketina medyayeke profesyonel hewcedarî bi çi heye?**

Eger tu sedemên esasî yên profesyonelnebûna medyaya kurdî ji min bipirsî ezê yekser bêjim; 'Rojnamegerên profesyonel kêm in.' Li hemû dinyayê rojnamegerên profesyonel kêm in. Ev yek normal e ku li Kurdistanê jî hebe û kêm bin. Lêbelê ev yek nayê wê wateyê ku rojnamegerên profesyonel tûnene. Yên hene jî nayên xebitandin. Divê rê ji rojnamegerên profesyonel re bê vekirin. Ez gellek caran tînim ziman ji hin karan re profesyonelbûn hewcenak e. Lê hin kar jî hene divê tu layiqî wî karîbî û tu heqê wê bidê. Mînak, ji memûriya nifûsê re profesyonelbûn ne lazim e. Eger wî memûrî xeletiyek kir ew ê xetereyek neyê ser xelkê. Çawa ku yekî ne bijîşk be nabe mirovekî nexweş kontrol û mûayne bike, yekî ku ne rojnameger jî be nabe ku rojnamegeriyê bike ev yek jî wisa ye. Heman tişt e. Eger wî karî bike jî ew ê ne karekî efektîv be. Sedema esas a vê yekê tûnebûna kadroyên profesyonel e. Divê partiyên siyasî yên Herêma Kurdistanê rê li ber medyayeke profesyonel vekin.



**Ez dixwazim bêm ser medyaya Herêma Kurdistanê, beriya niha bi çend mehan Wezareta Pêşmerge daxuyaniyek belav kir û eşkere kir ku ji ber weşana hin kanalan jiyana Pêşmergeyan dikeve xeterê û Pêşmerge jiyana xwe jidest didin. Medyayê çawa xetere dianî ser Pêşmergeyan?**

Heger mirov li Kurdistanê binêre dibîne ku xetera şer her tim li Kurdistanê hebûye. Ji devla ku Wezareta Pêşmerge rexneyan li medyayê digre, hewceye Wezareta Pêşmerge jî bê rexnekirin. Hewcedikir ku beriya şer were ber derî, Wezareta Pêşmerge rê li ber vê yekê bigirta û peywendiya Wezareta Pêşmerge û medyayê daniya. Kurdistan di haletê şer deye, beriya şer divê ji vê rewşê re yasa bihatana amade kirin. Li hêla din jî li cihanê gellek tecrûbe hene Wezareta Pêşmerge dikarîbû ji wan tecrûbeyan îstîfade bikira. Dikarîbû li gor wan tecrûbeyan wan jî ji ji xwe re sîstemek ava bikira. Wezareta Pêşmerge dikarîbû ji wan tecrûbeyan îstîfade bikira û ewlehiya neteweyî, ewlehiya Pêşmergeyan û ya rojnameger bi xwe jî bistenda. Eger pergalek tunebe di haletê şer de jiyana rojnamegeran bi xwe jî dikeve bin xetereyê. Ezê ji şerên pêk hatine çend ninûneyan bidim ji bo ku em baş fêm bikin ku bê ka Wezaretê Pêşmerge jî dikarîbû çi bikira. Di navbera Amerîka û Vîetnamê de di 1955-1975'an de şer hebû. Serokê Amerîkayê yê wê demê dibêje; 'Sedema têkçûna me ya li Vîetnamê medya bû.' Di şerê Vîetnamê de medyayê rasterast agahdarî li xelkê belav dikirin. Ji eniyên şer yekser agahî li xelkê dihatin belavkirin. Xelkê Amerîkayê nerazîbûna xwe nîşan dida û digotin; 'Çima leşkerên Amerîkayê li Vîetnamê ne û ev leşker çi tînin serê xelkê Vîetnamî.' Vê yekê hişt ku li hember Amerîkayê nerazîbûn pêk were. Divê em berxwedana xelkê Vîetnamê jî ji bîr nekin. Bê guman wan jî berxwedanak mezin dan û welatê xwe rizgar kirin. Lê belê sedemeke serekî ya vekişîna Amerîkayê ya ji Vîetnamê medya bû. Medyayê kir ku Amerîka li Vîentnamê dagir ker e û divê ji Vîetnamê derkeve. Amerîkayê ji şerê Vîetnam tecrûbe stend û sîstemeke a medyayî ava kirin. Dema di 1982'an de ketin Grenadayê sîstemeke wan hebû.

Ji berk u Grenada bi lez bi destxistin dema wan çênebû ku wê sîstema xwe bikar bînin. Di 1984'an de li Panamayê ew sîstem bikar anîn. Îngîltereyê di şerê Falklandê de bi Arjantînê re şer kir sîstema Amerîkayê ya haletê şer bikaranî. Ji wê rewşê re dibêjin; hawûzê nûçeyan. Amerîkayîyan ew sîstem dan Îngîlîzan ew sîstem gellekî efektîv bû. Ev sîstem çawa ye? Wezareta leşkerî, îstîxbarata wî welatî û rojnamegerên profesyonel li hev rûdinên û sîstemekê ji xwe re datînin. Amerîkayê di şerê Kendavê de wisa kir. 200 rojnameger li hev kom kirin û ew weke tîman terxan kirin. Di her tîmê de ya ji M6'ê yan jî ji CIA'yê pisporekî serperiştiya wan rojnamegeran dikir. Wan pisporan ji rojnamegeran re cih dem û kes diyar dikirin. ew ê rojnameger bi kê re biaxivin? Ew ê çi li ber çavan bigrin hemû ji hêla pisporan ve dihat diyar kirin.



Piştî ku rojnamegeran hevpeyvînên xwe raportên xwe amade dikirin dişandin ji navendekê re ew navend ji rojnamegeran, ji pisporên îstîxbaratê û leşkeran pêk dihat. Wan kontrol dikir. Piştî kontrola wan ew raport û hevpeyvîn dîsa dişandin ji rojnamegeran re û digotin hûn êdî dikarin wan bidin dezgehên xwe û wan belav bikin. Rûsya di şerê bi Gurcistanê de wisa kiribû. Em dikarin gellek nimûneyan bidin. Divê Wezareta Pêşmerge jî karekî wisa û sîstemeke wisa bikar bianiya. Eger Wezareta Pêşmerge karekî wisa bikira ez di wê baweriyê de me ku ew ê li hember Pêşmergeyan kemîn pêk nehata. Ew ê ewlehiya neteweyî û ya rojnamegeran jî neketa xetereyê. Dijminên kurdan gellek in. Ew ê li binêrin di vî warî de kêmasî heye û ew ê wê kêmasiyê bikar bînin. Ez gazinên wan ê ji medyayê fêm dikim lê gazin ji wan jî tên kirin. Hewce bû Wezareta Pêşmerge berê xe bide xwe û wê sîstemek ji xwe re ava bikira. Tu di haleta şer deye û divê tu li gor wê tev bigere. Eger tu bêji azadiya medyayê, azadiya ramanî... mixabin kes wisa nake. Tiştekî wisa tuneye. Li hemû dinyayê wisa ye. Ez ne di wê baweriyê de me ku kurd ji amerîkî, rûsî, fransî û îngilîzan demokrattir in.

**BasNews / BasNûçe / BasHaber karêkî pîroz dike. Valahiya di medya kurdî dadigre. Hewldana wê ew e ku medyaya kurdî bike medyayeke profesyonel. Ez we pîroz dikim. Hûn her serkeftî bin.**

**Di dema şer de pedîvî bi sansûr û kontrola dezgehekê heye?**

Ez bi xwe wisa difikirim. Ez nizanim bê ka tu çi difikirî... û rojnamegerên din ê kurd çi difikirin. Ji xwe rojnamegeriya bêlayan li tu deverê tuneye. Azadiyeke nisbî heye. Ev ne di haletê şer de jî wisa ye. Sansûr li hemû dinyayê heye û divê li Kurdistanê jî hebe. Di şûna ku ew ê ji ber nûçeyeke ne lir ê 10 Pêşmerge şehîd bibin bila ew rojnameger û dezgeha wî bên girtin. Bêne qedexe kirin. Di dema şer de nabe ku mirov naîf be. Sansûr li hemû dinyayê heye ne tiştekî asayî ye. Swêd welatekî demokrat ê cihanê ye. Li wir jî sansûr heye. Dema ku ez dibêjim sansûr heye ez ji ber xwe ve nabêjim û min ew tişt nebihîstiye. Ezdi Wezareta Kulturê ya Swêdê de di beşa medyayê de kar dikim. Li wir televîzyonan kontrol dikin, rojnameyan kontrol dikin eger tiştekî ne yasayî hebe cezayê li wê dezgehê dibirin. Kurdistan di halekê awartê re derbas dibê. Nabe ku em gazinan ji neyarên xwe bikin. Divê em gazinan ji xwe bikin. Ew ji xwe neyar e karê xwe dike. Divê Herêma Kurdistanê, Wezareta Pêşmerge, Wezareta Navxweyî sîstemekê ava bike û hin zagonan derxe. Radibin û rûdinên dibêjin; 'Pêşmerge reviyaye, em ala Kurdistanê qebûl nakin.' Eger ev rewş çi li welatekî pêşketî be çi jî li welatekî paşdemayî de pêk bihata ew ê xelk derketana kolanan û li hember van kesan xwepêşandan li dar bixistana. Ez ê tiştekî bêjim eger yûnan û tirk şer bikin û rojnameyeke tirk bêje; 'leşkerên me ji ber leşkerên tirkan direvin.' Beyî ku hikûmet li hember van kesan lêpirsînê veke ew ê xelk derkevin kolanan û li hember wan xwpêşandanan bikin. Li welatê me tiştên wisa dibin û ji em normal dihesibînin. Divê hikûmet yasayan derxe û rê li ber van tiştan bigire. Eger yek heqeratê li nirxên neteweyî bike divê bê ceza kirin. Nirxên neteweyî çi ne? Al e. sîrûda neteweyî ye. Li hemû cihanê ev tişt hene. Divê Herêma Kurdistanê jî yasayan derxe û van nirxan biparêze.

**Medyaya kurdî weke ya cihanê xwe aktuelîze kiriye gelo? Gihiştiye wê lez û beza medyaya cihanê?**

Eger em medyaya kurdî li gor 15 salên berê muqayese bikin niha gihiştiye qonaxeke baş. Lê belê eger em li gor, medyaya welatên pêşketî û welatên herêma me muqayese bikin, em dikrin bêjin ku medya kurdî bi pêşve neketiye. Di warê aktûeliyê de em lê binêrin. Medya kurdî teknolojiya herî pêşketî ya cihanê bi kar tîne. Çiqas em rxne bikin jî, hin rojnamevanên ku ez wan diecibînim gellek in. Hin saziyên ku karê xwe baş dikin gellek in. Di medya kurdî de çend kesên ku karên gellekî baş dikin hene. Lê belê ew nikarin rewş biguherînin. Lê ew hêviyê didin. Medya kurdî, dezgehên kurdî, xwedî tekonolojiyeke baş in. Lêbelê nikarin wê bikar bînin. Mesrefên mezin tên xerc kirin lê encameke baş tuneye. Ew jî careke din ji me re dide eşkere kirin kêşe ne maddî ye kêşe nebûna rojnamegerên profesyonel e. Rojnamegerî ilmek e. Divê beşên ragihandinê yê Kurdistanê karê xwe baş bikin. Fakûlte û zanko erka xwe baş baş bikin. Ez baş zanim ku xwendekarên beşên ragihandinê yên zankoyên Kurdistanê romanek jî nexwendine. Mamosteyên wan hemû hevalên min in. Ew ji min re dibêjin. Li sê çar cihan beşên ragihandinê hene. Ji wan fakûlteyan ji tûnede 100 kes der diçin û ew diçin dezgehên medyayê bi wî awayî der diçin wisa nabe. Bi wan kesan rojnamegerî nayê kirin. Li gellek deveran jî ji bo xatirê xal û xwarzêtiyê kes têne stendin. Ma xal û xwarzê ew ê çawa karibin wî karî bikin. Li hemû dinyayê ev kêşe heye. Lê em dibêjin; 'bila ji wan 100 kesan 20 kes bibin profesyonel.' Mixabin wisa nabe. 30 kanalên kurdan hene. Di her kanalê de 3 rojnamegerên profesyoel hebin kêşe çareser dibin.



**Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî di Roja Rojnamegeriya kurdî de di daxuyaniya xwe de da zanîn ku propaganda li ser Kurdistanê heye û divê medyaya kurdî hişyar be. Daxuyaniya Barzanî tê çi wateyê?**

Ev kêşe li hemû cihanê hene. Niha bala xwe bidê. Di şerê navxweyî yê Ukrayna de Rûsya û welatên Rojava niha li hember hev sekînine. Şer bi xwe ne tenê şerê leşkeriye. Şerê înformasyonî jî heye. Ji ber ku ez bi rûsî zanim û zimanên din ê rojava ez li televîzyonên hemûyan temaşe dikim. Şerê heyî ne yê leşkerî ye. Şerê înformasyonê ye û care yekem ku rûsî di şerekî wisa de li hember rojava bi ser dikevin. Rojavayî jî vê yekê qebûl dikin. Rûsyan xwe gihandiye û rojavayî nikarin xwe li hember înformasyona wê bigirin. Şerê psîkolojîk heye. Şerê înformasyonê heye. 30 kanalên kurdan hene. Divê ew jî li hember propagandayê kontrapropagandayê bikin. Eger li hember kurdan propagande heye bila kurd jî kontrepropagandayê bikin û bila ew rojevê biguherînin û ew rojevê diyar bikin. Medya kurdî nikare vî karî bike. Di dema şerê Şengalêde xêrnexwazên kurdan gotin; 'Pêşmerge reviyane. Pêşmerge nikarin şer bikin.' Televîzyonên Kurdistanê jî ew xistin rojeva xwe li hember vê yekê konrepropaganda nekirin. Dikarîbûn pisporên leşkerî derxistana ser ekranên xwe û rewş eşkere bikirana. Lê ev nekirin. Kurd negihiştine wê qonaxê ku şêrê kontrpropagandayê bikin. Daxuyaniya Serokê Herêma Kurdistanê Messûd Barzanî di cih deye. Eger kurd di warê leşkerî de çiqas bi serkevin jî di medyayê de bi sernekevin encamên efektîv ew ê dernekevin hol ê. Bi hezaran Pêşmerge şehîd bûne. Sîngên xwe li hember tanq û topan vegirtine. Eger tu derkevî li kuçeyên Bakurê Kurdistanê li Amedê tu jî xelkê bipirsî ew ê bêjin; 'Pêşmerge direve. Peşmerge şer nake. Peşmerge xwe li hember DAIŞ'ê nagire.' Ev propagandaya dijmine li hember kurdan. Eger medya kurdî civaka xwe di warê înformasonê de têr neke ew ê dijmin werin wê valahiyê li gor xwe înformasyonê bikin û xelkê têr bikin niha mixabin wisa ye. Neyar bi hemû awayî şerê me dikin çi şerê, psîkolojîk be çi jî yê înformasyonî be. Divê Wezareta Pêşmerge û Wezareta Karênavxweyî ji vê yekê re çareyekê bibînin. Bi awayên din çênabe. Pêşmerge li eniyên şer qehremaniên mezin dike. Lê belê dijmin bi tenê ne li eniyên şer e. Weke din jî şer dike. Divê medya kurdî xwe li hember şerê propagandayî amade bike. Pêngavên baş ê medya kurdî jî hene divê em wan jî ji bîr nekin. AkNews hebû, Rûdaw, BasNews nîşaneyên profesyonelbûnê ne.

**BasNûçeyê/BasHaberê jî salek xwe temam kir. Hûn jî wê ji nêz ve dişopînîn fikrên we li ser wê çi ne?**

BasNews / BasNûçe / BasHaber karêkî pîroz dike. Valahiya di medya kurdî dadigre. Hewldana wê ew e ku medyaya kurdî bike medyayeke profesyonel. Ez we pîroz dikim. Hûn her serkeftî bin.

BasNûçe 11 Gulan - 17 Gulan 2015





**Welat Baz**

Mahabada rengîn ya Rojhilatê Kurdistanê, bajarê ku bapiran avakiriye.

Rojhilatê Kurdistanê li gor pergala rêvebiriya Dewleta Îranê wek pênc eyaletan ji hev hatiye veqetandin. Ji bilî eyaleta bi navê Kurdistanê, bajar û heremên din yên Kurdistanê wek eyaletên; Kirmanşa, İlam û Loristan ji hev hatine xistin. Parêzgeha Urmiyê û navçeya wê Mahabad di nav sînorên Eyaleta Azerbaycana Rojava de cih digre.

Mahadab ji mêjve bajareki kurdan bûye û rûniştvanên wê tev kurd bûne. Piştî ku Mahabad bû navenda Komara Kurdistanê ev bajêr di dîroka siyasî ya kurdan de wek remzeki netewperweriya kurdan nav daye. Ji bilî taybetiya siyasî, sûk û bazara ba-jêr jî li Kurdistane navendeke giring e.

Li gor pergala fêrmî ya Dewleta Îranê, Mahabad qezayeke wîlayeta Urmiyê ye. Ma-habad 150 kîlometre dûrî Urmiyê ye. Bajêr û derdorê bi eyaleta Azerbaycana Rojava ve girêdayi ye.

Bajarê Mahabadê navenda herêma Mûkriyan e. Bajêr ji bakûr ve cîranê Gola Urmiyê û herêma Sildoz, ji rojhilat ve yê Miyandûaw û Tikab, ji başûr ve cîranê bajarê Bo-kan û ji rojava ve jî cîranê Başûrê Kurdistanê ye.

Firehiya xaka bajêr 2592 km qare ye. Xaka Mahabadê ji sisêya yekê nexşa eyaletê dagir dike. 196 gundên bajêr hene. Mahabad ji beş û gundên wek Xelîfan, Kanî Ba-zar ku navenda wê Kitke ye, Mengor a Rojhelat ku navenda wê Endullah Kurd e, Mengora ku navenda wê Mahabad e, Axtaçi ya Rojava ku navenda wê Qerebûlax e, Mûkriyan a Rojhilat ku navenda wê Gogtepe ye û Mûkriyana Rojava ku navenda wê Diryaz e, pek tê.

Şêniya giştî ya Mahabadê li gor hijmarên sala 2015'an tevi qeza û gundan nezî 162 hezar kesî ye. Nifûsa nav bajêr nêzîkî 200 hêzarî ye.

Di salên dema peytextiya Komara Kurdistanê de şêniya bajarê Mahabadê nêzî 20 hezarî bû. Navçeyên Bokan, Nexedê, Şino, Miyandûaw, Şahîndêj, Tikab, Saqiz, Bane, Serdeşt û Pîranşar bi Mahabadê ve giredayî bûn. Di sala 1943'an de rejîma Tahranê, bajarên derdore ji Mahabadê veqetand.

Bajarê Mahabadê ji aliye bakûr cîranê Gola Urmiyê û Bajarê Miyanduavê, ji rojhelat ve cîranê Bajarê Bûkan, ji başûr ve cîranê bajarên Seqiz û Serdeşt û ji rojava jî cîra-nê bajarên Piranşara û Nexedê ye.

Şêniya Mahabadê bi giştî kurd in. Di dema Komara Kurdistanê da di salên 1945'an de li herema Mahabadê herçend hijmarekê kêm cihû hebûn jî, piştî Komara îslamî ew çûn İsrail an jî deveren din yên îranê.

Niha li Mahabadê ji bilî kurdan , hijmareke kêm azerî û farsên karmendên dêwletê henê. Kurden bajêr jî bi giştî Musluman, ji mezheba Sûnî û ji bawêriya Şafî nê. Azerî û farisên Mahabadê şîiyên Diwazde Îmamî ne.

Li Mahabadê gelek eşîr û êlên kurd yên navdar dijîn. Li derdora Mahabadê Eşîra Bil-bas ku ji êlên; Mamêş, Pîran, Gewrîk, Sosinî, Milkarî, Biryacî pêk tê dijî. Eşiren Dêbukirî û Dêhbukirî ku eşîrên esli ya Mahabadê tên hesibandin; li herêmên Şarwêran, Bihi û Axtaçî yên girêdayî Mahabadê rûdinin.

Ji eşîren din yên herema Mahabadê Ela Gurgê, li başûre bajêr, li herêmên çiyayî yên Piranşarê bicîh e. Eşîr çandiniya ce, titûn, bexçeyên fêki dike. Merş û berên wan jî binavûdêng in. Ela Osman Begî bi çandiniya ceh, dexl û titunê navdar e.

Ela Mêngûr. ji Serdeştê. heta Pîranşarê, ji Mehabadê heta Pîranê û heta sînorê Iraqê dijîn. Ev eşîr ji taîfeyên wek Eman, Zen v Zerin pek tê. Ji bilî van eşîran li derdora Mahabadê, eşîren Begzade û Axazade û Milan jî hene.

Mahabadî bi zarava Soranî û bi devoka Mûkriyanî diaxifin.

Navê Mahabadê yê kevn Sawicbilax an jî Sawicbilaxa Mukrî ye. Peyva Suwicbûlax bi zimane Mongolî ye û tê wateya Kaniya Sar. Ev nav paşê wek Seblax kirtbûye û heta roja me hatiye. Bajêr niha ji alî nifşên kevn ve wek Seblax tê binavkirin. Pişti des-thilatiya Riza Şahê Pehlewî, nave bajêr bûye Mahabad.

Di dema Mir Siltan Bûdax de Mahabad bûbû navenda desthilatdariya Mukriyan.



Hingê Maha-bad li Deşta Diryazê gundekî biçûk bû. Mukrî di herêmê de xwedî hêz bûn û Mahabad bi deste wan hatiye çêkirin. Herwiha di gûherînên siyasi û civakî yên herêma Mukriyan de, bandora vê eşîre gelek zêde bûye.

## Erdnîgar

Bajarê Mahabadê di nav çiyayên Kanişêxan, Qulqulax. Kela Sarimbeg, Çiyayê Zawaboke. Deşta Mecîd û Berde Sipiyan de cîh digre. Çiya û bilindahiyên navbirî wek kemerbendekê bajar girtine nava xwe. Mahabad ji deryaye 1320 metre bilinde.

Di nav xaka bajêr de çemê sereke rûbarê Mahabadê ye ku ji şaxên Kutir û Bitas pêk tê û Deşta Mahabadê av dide. Rûbarê Mahabad di nav bajêr de. ji kêleka Meydana Çarçira der-basdibe û bedewiyeke taybetî dide bajêr.

Li rojavayê bajêr li ber Rûbarê Mahabadê avbendekî hatiye çêkirin. Gola bendavê û çandini-ya avî bûye sedema avadaniya gundên derdorê jî. Ev rûbarê piştî ku ji gelek gundan derbas dibe. dirije nav Gola Urmiyê.

Li heremê Çemê Serdeşt. Çemê Siminê, çemê Bûkan û Çeme Kanisib jî derbasdibin û xaka Mahabadê avdidin.

Deşta Mahabadê ku deşeteke bi xak û berhemên xwe dewlemende hela Gundê Xanegê dirjê. Ji bilî Deşta Mahabadê herema başûre rojava jî xwedî erdekî xerûber e. Deşta Sarwêran û Lacan bi gundên xwe yên avedan ji herêmên herî xweş yên Mahabadê ne.

Derdorê Mahabadê tije kanî ne. Av û rûbara di nav bajarê re diherike sedemê hêşînahê û klimayeke nerm in. Dibêjin kaniyên Mahabadê dermanê gelek nexweşiyên çerm e ji bo sivikbûnê jî başin. Barana salanê ya ku li xaka bajêr dike, bi qasi 414 mîlîmetre ye. Bajêr navê xwe yê kevn ji ava xwê ya zelal girtiye.

Li deşt û çiyayên Bajara Mahabadê fêkiyên wek sêw, tirî û gindor ku tev xwedî tameke sirûştî ne tên çandin. Bi taybetî sêvên Mahabadê li hêmû heremê navdarin. Salane 60 hezar ton sêvên Mahabadê tên belavkirin. Li heremê bi taybetî li Şarwêran nezî 30 hezar kesî debara xwe bi fêkîvaniyê dikin.

Xwediyê baxçê sêva ji ku ji bavûkalan virve vî karî dike, dibijê ji ber ku sêvên me ewqas xweşin. valiyê Tahranê hersal tê Mahabadê û ji bo bajarê xwê Sêvan distîne.

Dareke sêva di 7 saliya xwe de sêvên xweş dide. Darekî 70 sal temen dike. Li Maha-badê dû cûre sev hene.

Ji bili fêkiyên navdar yên Mahabadê li xaka heremê sebzeyên wek mendê, karî, çûrîn, lûşê, rêwas. xelendor û cûrên din tên çandin. Li sûken Mahabadê, gelê bajêr herroj fêki û sebzeyên teze li firoşkeran distîne. Deştên Mahabadê li Kurdistanê wek depoya genim û hûbûbatê jî tê naskirin. Li deştên dervayê bajar û gundên derdorê genim,nok û silkên qendê tên çandin.

## Dîrok

Li gor mîtolojiya Arî, Mahabad navê yekem pêxêmberê vî qewmî ye. Dîroknûs Betlemyos Mahabadê wek Daroşah binavdike. Li nezî Mahabadê gundekî bi navê Di-ryas heye û ev gund di demên kevn de wêk navenda heremê bûye, Diroknûs Ravlin-son Mahabada kevn wek Darayas bibîr aniye.

Li gor jêderên Asûrî li derdora rêzeçiyayên Zagrosê îmaretên Xirxar, Elipî, Elbiriya û Mana hebûnê. Manayî li başûrê Gola Urmiyê li Mahabada niha bicîhbûne û ji keviya rûbarên Simin û Zerîn heta bajarên Bokan û Seqiz belav bûne. Di salherzara yekan de Mahabad navenda Şaristaniya Mana bûye.

Berî zayînê di sedsala 7'an de. desthilatdariya Medan li başûrê Gola Urmiyê bêlav bû. Hebûna Manayiyan jî li heremê heta dawiya vê sedsalê domkir û ew tevlî Medan bûn.

Mahabad û derûdorê li gor pevajoya dîrokî di bin desthilatdariya Mannayî, Medî. Hexamenişî, Îskenderê Mekedonî, eşkanî, sasanî, ereb û farisan de maye.

Mongolan di sedsala 13'an de heremê dagirkirine û demeke dirêj li wir mane. Ji ber vê yekê hin çiya û deştên heremê hin ji bi Mongoli tên binavkirin. Di sedasala 15an de Mîr Seyfedînê Mukrî heremê ji mongolan stendiye. Bi vî awayî Mukriyan li derdora Mahabadê asasê mîrnîşinekî xurt avêtine. Mahabada îroîn jî ji alî wan ve hatiye ava-kirin.

Di dema împaratoriya Sefawiyan de herêma Mukriyan navenda berxwedana dijî Şah Ebbasê Sefewi bûye.

Di şerên ve pêvajoyê de Mîre Eşîra Mukrî şêx Heyder û kurê wî Qûbadxan hatin kuştin. Li aliyê din şerên navbera eşîrên Bilbas, Dêbukrî, û Dêhbukrî û dijberiyên di navbera mezinên wan eşîran de, gelek xesar dida avadaniya hereme.

Di salên 1609 û 1610'an de. di dema Şerê Kela Dimdim de Mahabadiyan piştgiriya Emîrxanê Bradost kirin. Dema berxwedana Kela Dimdim li dijî Şah Ebbas têkçû, Şah li bajêr komkujiyekî pêk anî. Gelek ji kurdên heremê jî berbi Xorasanê ve hatin sirgûnkirin. Di dawiya sedsala 19'an de li herema Mukriyan û bajare Mahabadê di bin tesîra tevgera Şêx Ubeydulahê Nehrî û Hemze Axayê Mungûr de maye.

Heta dawiya vê sedsalê mîr û begên kurd li Mahabadê hukum ajotine. Bajarê Mahabadê di dema şerê yekem de ji leqayê gelek êş û eleman hat. Serokeşîren kurd bi fîta Osmaniyan li Mahabadê qonsolosê Rûs kuştin. Leşkerê Rûs jî ji bo toldanê ji xe-lkê bajar sedan kes kuştin û ji bajêr vekişiyan. Piştî ku Osmanî ketin bajêr, li herêma Mukriyan bi tawana hevkariya Rûsan gelek kes bidarde kirin. Mahabad di vê pêvajoyê de hatibû ruxandin.

Di sala 1935'an de lehiyek bajêr serûbino kir. Bajarê nujen li ser pelişên bajarê kevn hat avakirin.

Ji ber ku Şah Riza Pehlewî di dema Şerê cîhane ye Dûyem de nezî Almanya faşîst bûbû di Tebexa sala 1941'an de jî alî Sowyet, Brîtanya û Emerîka ve hat dagirkirin. Hêzên rejîma şah ji heremên dagirkirî û ji beşek Kurdistanê vekişiyan.

Leşkerên Sowyetê bajarên Xoy, Urmiye, Mako û Şahbûr dagirkiribûn û hêzên Îngiliz jî heta Kermanşahê hatibûn. Herema Mukriyan û Mahabad vala mabû.

Li ser daxwaza Sowyetê, Qazî Mihemed rêvebiriya bajêr girt stûyi xwe.

Guherîna rewşa siyasî ya heremê di nav kurdan de bû sedemê legerinên tayînkirina qedera xwe. Di 15'ê Sibata 1945'an de li Mahabadê qereqola dawîn ya rejîma Îranê ji alî gel ve hatibû rûxandin.

Di vênavberî de şerê cîhanê bidawî bûbû û Dewleta Sowyetê di şer de Almanya pelixandibû. Di cotmeha 1945'an de 10 hezar gundiyên Barzan derbasî Rojhilatê Kurdistanê bûn. Şêx Ehmed Barzanî tevî hijmarek mezin penaber li Mahabadê bicîh bûbû.

## Peytexta Kurdistanê

Roja 17'ê Kanûnê 1945'an Mahabadiyan bi daxwaza otonomiyê li bajêr meşekî lidar-xistin û Qesra Adliyê ya remza dawîn a rejîmê dagirkirin. Ala Kurdistanê hat daleqandin. Li meydana Çarçira li keviya rûbara Mahabadê di sehera roja 22'ê Çile ya sala 1946'an de ji Mako, Xoy, Selmas, Urmiyê, Saqiz, Bane, Sîne, Kirmaşan û îlamê bi sedan kurd li Mahabadê civiyabûn. Ew di nav kincên xwe yê cejne de li Meydana Çarçira kombûbûn. Peşmergeyên kurd di nav ûnîformayên leşkerî yê fermî de, li derûdora meydana rezbûbûn.

Ev rûbarê ku ji kêleka Çarçira derbasdibû li gor Mahabadiyan wek hêsrên azadiyê hem xemgîn û hem jî bicoş bû.

Qazî Mihemed jî tevî rayedarên Partî Demokrat li Çarçira amade bû. Qazî derdikeve ser kursî û bi dengekî bilind û bi hîssen mexrûr wiha dibêje: "Ji niha û peva Komara Xudmuxtar ya Kurdistanê hatiye damezrandin." Mahabadiyan vê roje heta tariya şevê li kolanan bi def û zîrne û govendê şahiyan lidardixistibûn. Bajarê wan peytexta komarê bû.

Piştî îlankirina Kontara Kurdistanê, di civîna 11'ê Sibatê de wezîrên komurê hatibû diyarkirin. Sinorên Komara Kurdistanê ji Mako heta Saqiz, ji Miyandûaw heta Başûrê Kurdistanê dirêj dibû. Di bihara sala 1946'an de sê meh piştî damezrandina Komara Kurdistanê li eniya Saqiz, di nav hêzên Komara Kurdistanê û yên Îranê de şerên dij-war derketin. Di vê navberê de Artêşa Sor di 9'ê Gulanê de ji Îranê vekişiya. Di nav kurd û Farisan de careke din şerên giran qewimîn. Piştî vekişîna Sowyetê, Qazi Mi-hemed li Tahranê bi Serokwezîr Qawam Siltana re rûnişt. Lê ji danûstandinan en-camek derneket.

Di 13'ê Kanûna 1946'an de Arteşa Îranê ji bo dagirkirina xaka Komara Kurdistanê li ser xeta Meyandûawe kombû. Qazî, bi şertê ku zirar nedin bajêr, hatina Artêşa Îra-nê ya nav Mahabadê erêkir. Piştî dagira Mahabadê 4 roj şûnde Qazî Mihemed û 45 serekên Komara Kurdistanê ji alî rayedarên Îranê ve hatin girtin. Dadgeha Leşkerî di roja 26'ê Çilê de biryara dardekirina her sê qaziyan da. (Wê bidome)



### Arezûnûsên Amedê:

# Divê yek jî halê me binivîse

Mehmet Emin Kan

Arezûsûsên ku ji mêj ve navbeynkariya gel û dezgehên fermî dikir û daxwazên gel bi hevokên xwe yên rêzdar li ser kaxezan rêz dikirin di vê dema sosreta teknolojiyê de yek bi yek xwe ji kolanên ber dezgehên fermî dikêşînin. Ev pîşeya ku li li Anatolyayê di sala 1762'yan de bi fermana padîşahê demê destpê dike. Lê tê zanîn ku dîroka wê ya li mezopotamya pir kevntir e.

**Arezûnûs berxwe didin**

Pişeya arezûnûsiyê ku pêwendiyên hemwelatiyan û dewlet û dezgehên wê pêkan dike û daxwazên hemwelatiyên ku zimanê yasayî tênagihîjin û li hember karmendên dadî û rêveberiyê kerr û lal dimînin bi zimanekî têr resmî li ser kaxezan rêz dikin, bi pêşketin û gelemperbûna teknolojî û amûrên wê yên nivîsîn û ragihandinê re roj bi roj ber bi têkçûnê ve diçe. Li gel ber bi çêkçûnê ve diçe jî di sala 2004'an de di derbarê arezûnûsan de doz hate vekirin û biryar hate stendin ku ev pîşe ji holê rabe. Sedem çibûn pir grîng nîne lê belê hin arezûnîs hene ku hê jî berxwe didin û dev ji vê pîşeya xwe ya kevnare bernadin. Me jî xwest em ew kêm arezûnûsên ku li hember biryarên fermî û tofana teknolojiyê hê jî berxwe didin bibînin û arezûyên wan bibihîsin. Bi vê mebestê em ketin dû şopa arezûnûsan û me berê xwe da kolanên ku dadgeh û Walîtî lê ne. Di vê lêgera arezûnûsan de me xwe gihand çendan.

**Hejmara wan kêm bûye**

Hemû jî dibêjin ku şert û mercên wan ne başin û ji berpirsyaran dixwazin ji bo şert û mercên wan baş bibin bila ji wan re holikeke piçûk çêbikin da ku stareyeke wan çêbibe ji bo berf û barana zibistanê û tava havînê. Yek ji wan wiha xwe û rewşa xwe tîne ziman: "Nave min Şeref Askan e. Nêzîkî 20 salan e ez bi karê arezûnûsiyê dikim û ji destpêkê heta niha ez li vê derê li ber Dadgeha Amedê kar dikim. Di salên destpêkê de karên me gellek baş bûn. Lê belê di wan salan de ku kompûteran her karî hilgirt ser xwe û di nav civakê de gelemper bûn karê me yê kevnar jî roj bi roj ber bi têkçûnê ve çû. Her roj bi hêviya rojên berê em têne ber dadgeh û walîtiyê da ku em pîşeya xwe pêk bînin lê belê nabe û em her êvar bi hêviyên şikestî û belengazî serê xwe pêl dikin û vedigerin malên xwe. Tenê kêm kesên ku nizanin kompûteran bikar bînin an jî yên ku xwendin û nivîsandina wan tune ye têne cem me. Em ji bo wan kêm kesan xizmetê dikin û daxwazên wan pêk tînin. Kesên din jî êdî karên xwe di kompûteran de pêk tînin û pêdiviya wan bi arezûnûsên belengaz tune ye"

**'Tu dezgeh alîkariya me nake'**



**Stareyeke me ku em xwe ji sermayê bibparêzin tune ye. Li hin bajaran an ji alî şaredariyan ve yan jî ji alî dadgehan ve ji bo arezûnûsan hin derfet hatine terxandin.**

Arezûnûs Şeref Askan'ê ku di axaftina wî de rikberiya teknolojî û kompûteran xwe dide der û bi dilekî dilsoj dibêje: "Bişewite mala kompûterê, mala me xera kir. Kompûterê bandoreke pir neyênî li ser pîşeya me kir. Lê belê pêwîst e em jî li gor şert û mercên demê tevbigerin Em li vê derê bi piranî ji bo ew kesên ku karê wan dikebe dadgehan arezûyan dinivîsîn. Ji bo dozên hevberdana jin û mêran û dozên din ên adlî. Her çiqas karê me wek berê vek berê nebe jî li ber Dadgeha Amedê em sê kes xebatê dimeşînîn. Lê hinek pirsgirêkên me hene mînak, em havîn zivistan li ser van peyarê ya ne. Pîşeya me li ber wundabûnê be jî em li ber dadgeha Amedê sê kes vê pîşeyê didozînin û hewl didin ku hem debara xwe pê bikin hem jî nehêlin ev pîşe wunda bibe" Askan, di dawiya axaftina xwe de gazinên xwe ji Walîtî û Şaredariya Amedê kir ku xwedî li wan dernakebin û ji bo şert û mercên wan baştir bibin bi tu awayî alîkariya wan nakin û got: "Net nebe dikarin li ber dezgehan ji bona me holikeke ku em xwe ji seqayê biparêzin çêbikin.

**'Em ji dozên siyasî bêpar in'**

Gultekîn Kaya'yê ku ji navçeya Amedê Erxenê ye û ew jî wek hevpîşeyên xwe yên din li ber Dadgeha Amedê arezûnûsiyê dike. Kaya jî wiha serpêhatiya arezûnûsiya xwe vedibêje: "Ji sala 1998'an bi şûnve ye ez karê arezûnûsiyê dikim. Di salên destpêkê ku hîna înternet li Tirkiyeyê pir gelemper nebûbû karê me pir baş bû û me bi şêweyeke baş debara xwe dikir. Lê belê bi gelemperbûna înternetê re roj bi roj karê me jî rawestiya û îro em hatine wê qonaxê ku êdî bi vî karî dabar nayê kirin. Êdî her kes dikare bi ser înternetê ve, bi qalibên hazir ku tenê bi guherîna navê xwe û dezgeha ku dixwaze serî lê bide karên xwe bikin. Tenê kêm kesên ku ji dozên xwe ne haydar in û rê û rêbazên serlêdana dezgehên fermî nizanin têne cem me û em ji wan re dibin alîkar û daxwaznameyên wan dinivîsin" Gultekîn Kaya ta radeyekê ji her dû hevalên xwe yên arezûnûs xweşbîntir bû û diyar kir ku bi gelemperbûna înternetê re karê wan ji sedî 30 kêm bûye û kesên ku karê wan ên dadwerî hene ji ber ku pir caran bi hin kêmasiyan têne dadgehê û ji bo tafilê karê xwe bi encam bikin pêdivî bi wan dibînin. Kaya anî ziman ku ji dozên dadgeha bilind bigire heta dozên cezayê û hevberdanê ew daxwaznameyan dinivisînin lê belê ji ber ku piranî doxwaznameyên wan ji alî parêzeran ve têne nivîsandin, ew ji dozên siyasî bêpar dimînin. Kaya bi mînakdayînan axaftina xwe wiha domand: "Min jî demekê li cem parezerêkî kar kir di wê pêvajoyê de min pirtûkên dadgeha bilind û dadgehên cezayê xwend û xwe gihand. Piştî vê xwegihandinê min dest bi vê pîşeya arezûnûsiyê kir. Zor û zehmetiyên karê me pir in. Wek nimûne; Em zivistanê di berf û baranê de û li dij sermayê li ser van pêgehan karê xwe dikin. Stareyeke me ku em xwe ji sermayê bibparêzin tune ye. Li hin bajaran an ji alî şaredariyan ve yan jî ji alî dadgehan ve ji bo arezûnûsan hin derfet hatine terxandin. Lê ji ber ku dewlet guh bi bajarên me nake em ji wan derfetan bêpar dimînin û em havînê ji germa rojê û zivistanê ji sermayê nikarin xwe biparêzin"

**'Em hostehiiyê piştguh nakin'**

Arezûnûs Mahmûd Şahîn'ê ku ew jî ji sala 1997'an ve vê pîşeyê dijîne jî wek hevpîşeyên xwe heman gazinan û heman daxwazan dike û dibêje: "Ji ber ku kesên tême cem me dixwxazin tafilê karê wan pêk bê, piştî ku em daxwaznameyan dinivîsin bêyî kontrolkirinê em radestî wan dikin. Kêm caran ku di daxwaznameyan hin pirsgirêk derdikebin û li me têne vegerandin. Lê belê em tafilê ew sererast dikin û dîsa radestî wan dikin. Her çiqas em debara xwe pê bikin jî em hostehiya karê xwe jî piştguh nakin û em bi hendazeyî arezûnûsiya xwe pêk tînin." Şahîn anî ziman ku ew dixwazin di karê xwe de teknolojiyê pêk bînin û bi ser kompûterê ve karê xwe bikin lê belê ji ber ku holik yan jî jûreke wan tune ye ew ji derfetên teknolojiyê bêpar dimînin û ji bê çarî bi dextîloyan dinivisînin. Şahîn da zanîn ku ew ji bo xwe ji germê yan jî ji berf û baranê biparêzin carinan ji xwe re holikên piçûk çêdikin lê şaredarî bi sedema ku nîzama dîmenê bajêr xera dibe nahêle em holikan bikar bînin. Şahîn da zanîn ku ji ber ku şaredarî jî têgihîşt ku ew çiqas tengezar in êdî dengê xwe ji wan re nake û axaftina xwe wiha bi dawî kir: "Nêzîkî 18 salan e ez vî pîşeyî dikim û pîşti evçend salan ez nikarim karekî dinê bikim û bêçar im ku vî karî bikim. Ji ber vê yekê ez û hevalên xwe, em rica dikin ku bila gel û dezgeh xwedî li me derkebin û nehêlin ku ev pîşeyê kevnar têk biçe"



# Li Rojhilat dîwarê stratejîk

Mamend Rojê

Li qafeyekê em bi komek heval û hogiran re civiyabûn. Wan qala bêdengiya Rojhilatê Kurdistanê dikirin. Dostek di wê baweriyê da bû ku Rojhilat di doxek statîk de ye û zehmet e ku zû bi zû mîna parçeyên din biteqe. Yekî dinê got; "Ne bawer im ku ev têz rast be, ji ber ku civak hemîşe dînamîk e û ranaweste. Dema biherike jî hingê dê bi xwe re guherînan jî bîne."

Niha dema em bala xwe didin ser vê mijarê, em dibînin ku parek ji rastiyê tê de heye. Serbarî viya jî mirov her tim vê pirsê ji xwe dipirse 'gelo çima dînamîkiya Rojhilatê dereng – dereng xwe nîşan dide?'. Gelo tu bêjî ev girêdayî dîwara dîrokî be ku Roijhilat ji parçeyên din cûda kiriye? An dibe ku ev kêmdengî ji xortbûna dewlet û lawazbûna kurdan were? Gelo bandorê çerxa dîrokê li gor vê formûlê li ser Rojhilat çiqas e: Bi hêziya dewlet lawaziya kurdan. Berûvajî vê jî: lawaziya dewlet û bi hêziya kurdan?

**Qesrê Şîrîn: Dîwara jeopolîtîk**

Davîd Mîtranî di sala 1950'an de, di kitêba xwe ku bi navê "Zona Navîn" nivîsiye de qala serzemînên Ewrûpa ya Navîn dike ku bi dîwarekî jeopolîtîkî – jeokultûrî ji Ewrûpa'ya Rojava hatine cûdakirin. Mîtranî ji vî dîwarî re dibêje sînorê navbera Ewrûpa ya Rojhilat û ya Rojava. Her wiha di wê baweriyê de ye ku ev dîwar sînorê navbera şaristaniya tatolîk û şarisatiniya ortodoks e jî. Ew dibêje romiyan nikarîn vî dîwarî biherifînin. Heta Napolyon jî êrîşî vî dîwarî kiriye lê şikestiye û neçar vegeriyaya. Hîtler jî xwestiye ku wî dîwarî nehêle lê belê ew jî biserneketiye. Paşê piştî şikestina Yekîtiya Sovyetê jî Rojava dixwaze ji Ukranayê wî dîwarî derbas bike lê xûya dike ku dê dîsan nikarbin!

Niha mirov dema berê xwe dide dîroka Rojhilatê Kurdistanê, rastî dîwarekî wisa xwe nîşan dide. Ev dîwar cara dawîn berhema peymana Qesrê Şîrîn e ku di sala 1635'an de di navbera osmanî û sefewiyan de hatiye wajokirin. Ev dîwar heta niha wek xwe maye û cengên yekem û dwema cîhanê û heta cenga sar jî nikarîne ku wî dîwarî birûxînin. Ev dîwar kevn e ku di dema împeratoriyên eşkanî û romî de jî hebû. Di dema herdu Împeratoriyên Roma û Sasanî de jî hebû. Sînor ava Dijle bû. Sînor carina çiyayên Zagrosê û carinan jî ava Dijle û geh jî ava Feradê bû. Ev dîwar heta niha berdewam e ku îro çiyayên Zagrosê ye.




Eger di warê jeopolîtîk û jeokultur de em lê binêrin, hingê em dibînin ku ev dîwar çarenivîsa Rojhilat e û her sê parçeyên din ji hev cûda kiriye. Loma mayîna vê dîwarê ku dîwarek jeokulturî û jeopolîtîkî ye jî wê hêlên siyasî di navbera vê parçeyê û her sê parçeyên din ji hev cûda bike. Mîna ku Mîtranî gotiye, "ev dîwar bi sanayî naherife."

**Formûl: Çerxa lawazî û bi hêzî**

Di warê sosyopolîtîk de jî hin taybetiyên din rewşa Rojhilat ji parçeyên din cûda dikin. Niha di wê sedsala dawiyê de mirov dikare formûleke dinê ji rewşa siyasî – civakî ya Rojhilat de derxe. Ev formûl jî wek gerîna çerxek xwe nîşan dide. Çawa ku di sirûştê de çerxek heye, çawa ku di nav civakê de çerxek heye, di dîrokê de jî em çerxeke wisa dibînin. Ev çerx jî ev e: Dema dewlet bi hêz dibe, wê gavê "hêza revîna ji navendê lawaz dibe. Ango hêza kurdan dişkê û neçar dimînin ku xwe paş de bikşînin.

Lê li hember vê yekê jî em dibînin dema ku dewlet dikeve nav tengijînê, hêdî hêdî hêza revîna ji navendê dîsa li ba kurdan xurt dibe û ewqas mezin dibe ku ji bo demekê dikarin axa Kurdisatnê bi xwe kontrol bikin û hegemonî û otorîteya xwe tê de bi cih bikin. Bo mînak jî em dikarin qala serhildana Simko bikin. Dema dewleta Qacar herifî, Simko ew valahî dagirt. Dema Riza Şahê Pehlewî desthilata xwe bi hêz kir, Simko şikest. Yan jî dema ku Riza Şah herfî, hingê Pêşewa Qazî Mihemed rabû û komar avakir. Dema Mihemed Riza Şahê duduyan hukumdarî destpêkir, hingê komar herifî. Katek ku Şah ruxiya, Qasimlo û hevalên wî serhildaneke mezin destpêkirin. Piştî ku Xumeynî bi hêz bû ew serhildan jî vemirî.

Di encamde; di navbera Rojhilat û her sê parçeyên din de dîwarekî jeopolîtîkî û jeokulturî heye ku mirov dikare bi 'Dîwarî Stratejîk' jî binav bike. Mîna dîwarê navîna Mîtranî, li Kurdisatnê jî dîwarekî stratejîk heye. Heta ku ev dîwar neherife, dê guhertinên mezin li wî parçeyê Kurdiatnê jî çênebin.



# Dîrokzan Olfert Dapper û Kurdistan



Mehmet Gültekin



**Olfert Dapper pê re destnîşan dike, wekî di bajarên ku ne li Kurdistanê nin yên weke Bexda'yê de jî gelek kurd tev ereb û cihûyan dijîn. Ew salix dike ku kurd bi piranî li ser baweriya misilmaniyê nin lê belê di derbarê wê de agahiyêne wan kêm in, herwiha parek ji wan jî li ser baweriya êzdiyatiyê nin. Ji agahiyên berfireh yên di pirtûkê de derbarê Siltan Selahedîn û malbata eyûbiyan de nin. Ew qala serweriya wan a li Misirê dike û dinivîse ku têkiliya wan herdem bi herêmên Kurdistanê re hebûye û piştî hilweşina dewleta wan hin ji endamên malbatê li bajarên kurdî de bi cîwar bûne.**

Di dîrokê de agahiyên herî kevn û berfireh derbarê kurd û Kurdistanê di çavkaiyên rojavayî de cîh girtine. Ji heyama kevnare bigre hetanî qurna navîn di gelek pirtûkên li ser baweriyên olî, dîrokî û bîranînên geroken de qala kurdan hatiye kirin. Ji ber ku pirtûkên wan serdeman nedihatin çapkirin, destnivîsên wan kêm peyda dibûn û agahî û zanistiyên di nav rûpelên wan de nedigihîştin her welatî. Piştî ku li Ewropa'yê ji sedsala 16'an pêve çapkirina pirtûkan ya ku êdî bi aletên di çapxaneyan de dihatin amadekirin pêşde çû, êdî zanistî û agahiyên kêrhatî bi berfirehî hatin parastin û belavkirin.

Di nav pirtûkên ku êdi bi vî awayê nûjen dihatin çapkirin yên dîrokzanê Hollandî Olfert Dapper (1636-1689) ê erdnîgarnas û dîrokzan cihekî sereke digrin. Xebatên wî di heman deman de bi zimanên hollandî, îngilizî û almanî, her weha bi demke kurt piştre jî bi zimanên mayîn hatin çapkirin. Bi saya pirtûkên wi, xasma ya bi navê pirtûka xwe ya bi navê Mezopotamya, assuriya, babîlon û Asya biçûk ya ku di sala 1680'î de hatibû weşandin agahiyên pêşîn ên gelek berfireh di derbarê kurd û Kurdistanê, bi taybetî ya erdnîgarî, etimolojî, bajar û jiyana li wir li Ewropa belav bûn.

Çavkaniyên agahiyên Olfert Dapper yên sereke pirtûkên olî, yên Strabo, Ptolemeus, dirôkzanên ereban û gerokên Ewropî ên ji sedsala 16'an in. Her çiqas Şerefnameya Şerefxanê Bidlîsî dora 80 sal beriya a Olfert Dapper hatibû nivîsîn jî, diyar e ku haya wî ji vê kitêbê tunebûye.

Goreyî ku Olfert Dapper wê demê di pirtûka xwe de neqil dike, Kurdistan, ew welat e ku tê de kurd dimînin û cinarên wan yên ereb wan wek kurdi bi nav dikin, kurd bi rastî jî ew miletê qedîm e ku nivîskarên yewnanî û latînî wan wek Gordier û Xenefon jî wan wek Kardûk bi nav dikin. Navê vî welatî di heyamên berê de ji ya niha cuda bûye. Wek nivîskarên ji wan deman dinivîsin, ew goreyî navê gel ê di dema xwe de bi cûdê hatibûye bi navkirin, wek mînak ew navê wan ê berê Kardûk bû û welatê wan li aliyê bakûr dima, ev welatê ku Xenefon û artêşa wî li nêzikî çemê Diclê rastî dijwariyan hatibûn û mecbur mabûn ku li ser riya ku jê hatibûn paşde vegerin bona çûyîna Yewnanistanê. Hin çavkanî jî wan wek ji nesla Xalidiyan dihesibînin yên ku di nava çiyayên vî welatî de cîwar in. Peyva Kurdî jî te wateya yên koçberkirî.

Di Kurdistana ku alîkî wê farisistan û ê din jî erebistan e de gelek bajarên qedîm henin. Goreyi nivîsa Purchas bajarê Bitlisê û gelek gund û çiyayên li der û dor jî li vî welatî nin.

Derbarê taybetiyên kurdan de jî Olfert Dapper dibêje, hinek ji wan koçer in û hinek jî di şkeftan de dimînin lê belê piraniya wan bajarvan nin. Jinên wan ji yên cîranan wek ereb û tirkan azadtir in, ew dikarin bi mirovek nas û nenas re jî biaxifin, zimanê wan cûda ye û ew ji hemû zimanên cînaran nêzikî a farisî ye.

Olfert Dapper pişt re di beşên cûde ên pirtûkê de gelek bajarên wek Amed, Amediye, Ruha, Mêrdîn, Meyafarqîn, Şengal, Malathia, Musil. Şehrêzor dinasîne.

Şahrezor bajarekî li Kurdistanê ye, li hawirdora wê gelek gol û avên germ henin, ji Musilê bi riya pênc rojan berbi Îranê dûr e û ew sînorê di navbera Îran û osmaniyan de ye. Li wir kela û qesrek heye. Li hêrêmê çiyayek bi darên berûyê heye û li derdorên wê gelek fêkî digihêjin, sêvên wê gelek hezkirî nin, kurd wan difroşin rêwiyên kerwanan. Mirovên vê herêmê dewsa nan fêkiyan dixwin. Ew gelek cûre heywanan jî xwedî dikin û bi wan re derdikevin bilindciyan û konan vedigirin. Di nav çiyayên herêmê de daristan jî heye ku tê de marên bi qasî donzdeh piyan dirêj dijîn.

Li ser rewşa rêvebirî, siyasî û leşkerî jî Olfert Dapper di hin beşan de agahiyan neqil dike ku hin ji wan gelek balkêş in. Wek mînak, dema salixê bajar û herêma Sîne'yê dide, ya ku bi riya pênc rojan ji Şehrêzorê dûr e, dibêje ku mîrê Kurdistanê di vir de jiyan dike û ew girêdayî qiralî farisan e.

Agahiyeke nêzikî vêya ew di derbarê mîrê Bidlîsê de dide. Olfert Dapper dibêje, Bedlis bajarekî li Kurdistanê ye, ew di navbera du çiyayan de hatiya avakirin. Di navbera wan herdu çiyayan de tapek heye qesrek li ser wê hatiye avakirin. Ev tapê ku qesr li ser e wek zinarekî ye û mirov nikare bi hêsanî xwe bigihînê. Di nav qesrê de du baxçe henin û yeka piçûk jî heye ku mirov di nav re diçe odeya mîrê vî welatî. Tenê mîr û seyîsê wî dikarin bi sîwarî biçin qesrê, ev yek ji kesên din re qedexe ye. Bajar jî li ser deşta di navbera hedu çiyayan hatiye avakirin û ji herdu aliyan de jî pişta xwe spartiye wan. Li wir du xan jî henin ku yek ji wan di nav bajêr de û ya din jî li derveyî wê ye ku rêwî û bazirgan bi piranî di ya dawîn de dimînin. Ji ava çiyayên herdu aliyan de pênc-şeş çem di nava bajê re dikişin û wisa ku carina sêlav radibe.

Di derbarê serweriya herêma Bidlîsê de ew dinivîse, wekî mîrê kurdan ê vî bajarî ewqas xurt e ku ew dikare 20 heta 25 hezar şervanên sîwarî derxe meydanê û her wisa gelek ên peya jî. Ev Mîr ji hemû mîrên mayîn ên Kurdistanê xurttir e, ew ne hukmê Şah û ne jî yê Siltanê osmaniyan li ser xwe qebûl dike. Ji ber vê ye ku serekên herdu dewletan jî dostaniya wî dixwazin, da ger ew bixwaze, dikare riya di navbera Heleb û Tewrêzê bibire, ya ku ji welatê wî re derbas dibe. Di nav van çiyayan de deh şervanên wî dikarin riya di nav van çiyayan de li ber hezar dijminî asteng bikin. Siltanê osmanî ji Şah zêdetir bala xwe dide dostanya bi mîrê Bidlîsê re ji ber ku dema ew bixwaze biçe Wanê an jî Tewrêzê divê ew di nav welatê vî mîrî re derbas bibe. Dema mirov ji vî bajarî berbi Sûriyê diçe, divê di nava gelek çiyayên asê re derbas bibe, wisa di hin ciyan de ji bo rêvekirinê zinarên bilind qûl kirine.

Bajareke ku Olfert Dapper dîsa bi balkêşî salixê wê dide Amediy ye. Ew neqil dike ku Amediye bajarekî Kurdistanê ê bedew û gelek mezin e û mirov ji Cizîrê bi riya du rojan digihêje wê. Ji ber ku bajar li ser çiyayekî hatiye avakirin, hetanî mirov bikaribe hilkişe wê dora saetekî dajo. Di nava bajêr de cihekî gelek xweşik heye ku tê de hemû berhemên bazirganan wek titûn û sêvên reş tên firotin. Li bajêr 3 an jî 4 kanî hene ku ava wan ji hundirê zinaran diherike. Binecihên wê ji bo dewarên xwe avê ji zinaran bi boriyên ji çermê çêkirî dikişînin. Mîrê Amediye'yê dikare ji yên 8 heta 10 hezaran sîwar û ji vê bêtir jî şervanên peya derxe. Nifûsa welatê wî ji yên hemû herêmên Kurdistanê zêdetir e.

Olfert Dapper pê re destnîşan dike, wekî di bajarên ku ne li Kurdistanê nin yên weke Bexda'yê de jî gelek kurd tev ereb û cihûyan dijîn. Ew salix dike ku kurd bi piranî li ser baweriya misilmaniyê nin lê belê di derbarê wê de agahiyêne wan kêm in, herwiha parek ji wan jî li ser baweriya êzdiyatiyê nin. Ji agahiyên berfireh yên di pirtûkê de derbarê Siltan Selahedîn û malbata eyûbiyan de nin. Ew qala serweriya wan a li Misirê dike û dinivîse ku têkiliya wan herdem bi herêmên Kurdistanê re hebûye û piştî hilweşina dewleta wan hin ji endamên malbatê li bajarên kurdî de bi cîwar bûne.









# Berteka li TÜYAP'ê wêjeya kurdî geş dike

Kalê Badî

Piştî biryara TÜYAP'ê ya betalkirina 5'emîn Fûara Pirtûkan a Amedê ku ji sala 2011'an bi şûn ve her sal di hefteya 3'yemîn a meha Gulanê de pêk dihat, ku bû sedemê nerazîbûna weşanxane û cîhana wêjeya kurd, Şaredariya Amedê biryar da ku ew ê bi weşanxaneyên kurd li Amedê fûara pirtûkan lidar bixin. Bi vê mebestê di navbera 12 û 17'ê Gulanê de li Amedê li qada Sumerparkê pêşangeha pirtûkan bi naveroke dewlemend a çalakiyên hunerî destpêdike.

## Pêşangeha pirtûkan destpêdike

Piştî ku TÜYAP'ê biryar da ku êdî ew ê li Amedê fûara pîrtûkan her sal li dar nexe, ew ê ji dû salan carekê lidar bixe û cîhana wêje û entelektuliya kurd aciz kir, bi daxwaza nivîskar, rewşenbîr û weşanxaneyên kurd, Şaredarî û dezgehên ziman û rewşenbîrî yên kurd ên li Amedê biryar dan ku ew ê bi drûşma 'Li warê şaristaniyan li ber ronahiya pirtûkan' li Amedê pêşangeha pirtûkan lidar bixin. Bi vê mebestê biryar hate stendin ku li Amedê bi dewlemendkirina çalakiyên din ên çandî û hunerî 1'emîn Pêşangeha Pirtûkan ku wê her sal bê lidarxistin hate stendin. Ev pêşangaha pirtûkan a ku wê di navbera 12 û 17'ê Gulanê de li Qada Jiyana Hevpar a Sumerparkê bê lidarxistin de, li gel hejmara beşdariya weşanxaneyên kurd û hin weşanxaneyên tirk bi naverok û hejmara çalakiyên xwe yên hunerî jî balê dikêşîne ser xwe.

## Anlı: Di çarçoveya hurmetê de her reng beşdar e

Di derbarê xebatên pêşangehê de, li Eywana sînemayê ya Şaredariya Amedê bi beşdariya Hevşaredarê Amedê Fırat Anlı û Endamên Lijneya Xebatên Pêşangehê daxuyaniyeke çapemeniyê hate kirin. Di daxuyaniyê de Fırat Anlı balê kêşa ser biryara TÜYAP'ê û diyar kir ku ji ber vê biryara wê ya li hember bajarekî weke Amedê ku di rojhilata navîn de xwedî girîngiyeke mezin e û wek paytexta çar perçeyên Kurdistanê tê dîtin ew dilgiran in û got: "Piştî vê helwesta TÜYAP'ê me jî biryar da ku em pêşangeheke bi vî rengî lidar bixin. Divê herkes xwedî li vê derkeve. Bi xwedîderketina wê re em hêvî dikin ku ev pêşangeh sûdeke mezin li hilbijartinên di pêş me de jî bike" Li ser pirsa peyamnêrê me ya di derbarê pirrengiya beşdarvanên pêşangehê de jî Anlı diyar kir ku ji bilî hurmetdariyê ew ji hemû raman û bizavên din re vekirî ne û di çalakiyên wiha yên hunerî û wêjeyî de ew grîngî didin xebatên çandî, hunerî û wêjeyî, ne kes û karan. Anlı got: "Dema me biryara vê pêşangehê da me xwest em hemû rengên zanistî, dîrokî, hunerî û wêjeyî pêşkêşî gelê xwe bikin. Em ji bilî hurmetdayînê ji tu kesan tiştekî din naxwazin." Anlı ragihand ku ew vê pêşangehê pêşkêşî Kobanê û Şengalê dikin."

## Cihê herî goncav Sunerpark e

Di derbarê xebat û çalakiyên vê pêşangeha ku bi beşdariya 70 weşanxane û bi alîkariya gellek sazî û dezgehên ku karûbarên zanistî, wêjeyî, ziman, çand û hunerî dikin pêk tê de Endamê Lijneya Amadekar a Pêşangehê Mehmet Çakmak jî da zanîn ku armanca vê pêşangehê frotina pirtûkan nîne, geşkirin û gelemperkirina hemû beşên hunerê û zanistê ye û di çarçoveya pêşangehê de panêl û semînerên li ser helbest, wêje, dîrok, siyaset û çand û hunerê, konsêrtên mûzîkê yên hunermend, kom û koroyên zarokên Amedê têne lidarxistin. Çakmak destnîşan kir ku di çarçoveya pêşangehê de 80 çalakiyên ku bi beşdariya kesên grîng ên ku di warê xwe de pispor in pêk tên û got: "Beriya frotina pirtûkan armanca me ew e ku di rewşeke hunerî û wêjeyî de em li gel çalakiyên pirreng ên hunerî pirtûkan bigihînin hemû xwendevanan û têkiliyeke rasterast di navbera xwendevan û nivîskaran de durust bikin" Di derbarê goncaviya cihê pêşangehê de jî Çakmak anî ziman ku wan xwestiye vê çalakiyê li navenda bajar pêk bînin da ku pir kes dikaribe xwe bigihînê, ji ber vê yekê û ji ber ku di vê qadê de kafêterya, cihên bêhnvedanê û gellek derfetên din hene, wan cihê herî guncav Qada Sumerparkê dîtiye û wan li ser vê qadê biryar daye.

## Geşbûna kurdî TÜYAP û entelîjensiyaya tirk aciz dike

Di derbarê biryara TÜYAP'ê û berteka lidarxistina pêşangeha pirtûkan a li hember wê de Nûnerê PEN'a Kurd ê Amedê û nivîskar Şeyhmus Diken ji BasNûçe'yê re ragihand ku beriya ji raya giştî re bê aşkerekirin, bi ser hin jêderan agahî hatine ber destên wî ku TÜYAP'ê biryar girtiye ku fûara pirtûkan a ku ji sala 2011'an bi şûnve her sal li Amedê pêk tîne, ew ê ji dû salan carekê pêk bîne û ev fûarên ku ew pêk bîne jî ne di konsepta fûarên klasîk ên TÜYAP'ê, mîna çalakiyeke bîenalî û hunerî ya danasînê bêne lidarxistin. Dîken da zanîn ku ev biryara TÜYAP'ê di nav entellektuelên kurd de weke; 'Li bajarekî weke Amedê ku xwedî potansiyeleke baş a xwendinê ye TÜYAP ji ber sedemên dij-kurdî naxwaze fûarê pêk bîne' hate têgihîştin. Diken got: "Ez li wan geriyam, min ji wan pirsî 'Gelo ev biryar rast e û eger rast be sedemên wê çi nin?' Gotin; 'Belê rast e. Ji ber ku weşanxaneyên mezin ên Tirkiyeyê ji fûara Amedê pir pere qezenc nakin, naxwazin beşdarê fûarê bibin' Min ji wan re got: 'Rast e, lê jixwe fûarên pirtûkan ji bo qezenckirina pereyan nayêne lidarxistin, ji bo ku weşanxane pirtûkên xwe yên nû pêşan bidin, xwendevan xwe bigihînin nivîskaran û şahiyeke wêjeyî pêk bê têne lidarxistin. Paşê ez li çend weşanxaneyên mezin jî geriyam. Lê belê hemûyan jî gotin ku haya me ji vê biryarê tune ye. Axir em têgihîştin ku ev biryareke TÜYAP'ê ye û TÜYAP, xurtbûna reha kurdî tehamûl nake. Di fûarên berê de jî di navbera me û TÜYAP'ê de li ser mijara kurdîbûna xebatên fûarê ên wek; broşur û anonsan gengeşî pêk hatibûn. Lê em baş dizanin ku di nav cîhana entelîjensiya tirk de giraniyeke TÜYAP'ê heye û ev helwesta wê ji ber vê rola wê ye" Diken anî ziman ku êdî cîhana kurdî xurt, geş û gelempertir bûye, weşanxaneyên kurd bi yên tirk re dikarin reqabetê bikin û TÜYAP û hin weşanxaneyên tirk ji vê yekê aciz dibin, li xwe mikûr nayên û ji ber vê yekê hewl didin ji dû salan carekê û bi naverokeke lawaz destên xwe ji Amedê vekişînin. Dîken da zanîn ku TÜYAP'ê piştî betalkirina fûara Amedê biryar daye ku li Samsûnê fûarê li dar bixe û got: "Pir balkêş e. Em baş dizanin ku Amed, ji samsûnê pir goncavtir e û em ê bibînin ku wê li Samsûnê qet pere qezenc nekin. Sedemê vê yekê ne pere ne."

## Beşdarvan balkêş in

Di vê pêşangeha ku bi konsêrtên zarokan bala zarokan jî dikêşîne ser xwe de, di nav beşdarvanan de navên pir grîng hene. Hin navên girîng û balkêş ên beşdarî li Pêşangehê dikin ev in: Siyasetmedar Yaşar Kaya, Nivîskar Firat Ceweri, Nivîskar û rojnameger Altan Tan, Lêkolîner Dr. Celîlê Celîl, Nivîskar Selim Temo, Prof. Dr. Kadri Yıldırım, Nivîskar Yavuz Ekinci, Endamê Hînkariya Zanistên Civakî yê Zanîngeha Viyanayê Thomas Schmidinger, Doç. Dr. Abdülrahman Adak, Civaknas İsmail Beşikçi, Zimanzan Malmîsanij, Sînemager Teymûrê Evdikê, Nivîskar Şeyhmus Diken, Rojnameger Faruk Balıkçı.

Raperîn:

# "Dixwazim bi mûzîka kurdî li cihanê deng vedim"

Azad Xanzade

Hunermanda mûzîka kurdî ya bi nav û deng Raperîn ji destpêka jiyana xwe ya hunerê heta niha rastî eleqeyek gelek baş a mûzîkhezan tê. Hunermand a ku gelek heyranên wê hene piştî albumên 'Xapinok' û 'Tarûmar' (bi Mirady re) îcar jî xwe amade dike ku bi albûma 'Rêya newayê' derkve pêşberî heskiriyên xwe. Me bi Raprênê derbarê albûma wê ya dawî û xebatên mûzîkê de hevdîtinek pêk anî.

**Dema we dest bi mûzîkê kir, wekî jinekê, gelo hûn rastî astengiyên çewa hatin? Têkiliya we bi mûzîkê re çewa destpê kir?**

5 birayên min hebûn. Ez tekane keçik li cem wan mezin bûm. Zilaman dikarî her tişt bikin, lê jinan ev siûd tunebû. Hemû birayên min mûzîkjen bûn lê, ev rêwîtî ji bo min qet hêsan nebû. Çîroka min, ji çîroka Eyşe Şanê cudatir nebû. Dêstpêka min a mûzîkê di nava zehmetiyan de destpê kir. Bi rastî ji bo ku ez bikaribim bi mûzîkê mijûl bibim, min bedel jî dan. Lê piştî demekê min xelatê van zehmatiyan girt û niha gelek kes bi dilxweşî min guhdar dikin. Ev yek nabe nesîbê her kesî. Ez di wê baweriye de me ku dema meriv karekî ji dil bike, wê her tim xelatê xwe bigire.



Eger ku ez bêjim 'Min dilê xwe, jiyana xwe daye mûzîka kurdî' prole nabe. Ev 3 sale ez vî karî dikim. Saleke min bi amatorî derbas bû. Ev 2 sal in jî ez profesyonelî dixebitim. Albûma min a yekemîn 'Xapînok' di sala 2012'an de, ya 'Tarûmar' ku bi Miradî re wekî duetê bû di sala 2013'an de derket. Albûma nû 'Rê-newa' jî ji ber hin pêvajoyên zehmet taloq bû, nexwe niha derketibû. Van rojan ew jî wê derkeve.

**Hûn bi eslê xwe ji Serhedê ne. Hunermendên Serhedî bi Dengbêjiyê tên naskirin. Dengbêjiyê tesîrek çewa li ser we kir, derbarê dengbêjiyê de hûn çi difikirin?**

Denbêjî çanda me ya herî girîn herî resen e. Em jî kurdî distêrin, lê reseniya kurdî di mûzîka me de nabe. Loma li gor min divê çanda dengbêjiyî tu demê winda ne be. Ez di wê fikrê de me ku ji bo ev çand jiyan bike xebatên pêwîst tên kirin. Xweziya min ez jî bûma Dengbêjek. Lê mixabin ew jî qabîliyetekî taybet/cuda dixwaze.

**Dema ku hûn afirenêriya jinan jî li ber çavan bigirin, wekî jinekî di jiyana xwe ya hunerî de avantaj û dezavantajên we çine?**

Em hemû jî dizanik ku di cîhanê de kurdbûyîn karêkî gelek zehmete. Zehmetiyên jinbûyînê jî jixwe li holêne. Werin niha em senteza vê çêkin. Jinbûyina kurd, zehmete! Lê bê guman tiştên baş piştî zehmetiyan derdikevin holê. Ez jî di warê hunerê de xwe gelekî bi afirînêr dibînim, baweriya min ew e ku ev ji berk u ez jinekî kurd im wisaye. Zehmetî me digihînin. Wisa neba me nedikari ev kast tiştan biafirînin.

**Li ser terzê we her çiqas motifên kevnare hebin jî dîsa şopên rojavayî zêdetir tên xuyakirin, hûn ê ve derbarê de çi bêjin?**

Belê di terzê min de kevneşopî hima bêje qet tuneye. Min jî sedema vê yekî gelek lepirsîn kir. Dibe ku ji ber ez zêde di nava çanda kurdi de nemame. Li Îzmîrê mezin bûme. Mûzîka kurdî ya kevneşopî gelek diçe xweşiya min, lê ze xwe nêzî mûzîka rojava dibinim. Ez yekî zêde heyranê jiyana Ewropa'yê nînim, lê di wê baweriyê de me ku divê em mûzîka cîhanê jî ji nêz ve bişopînin. Hêvî dikim ez vê yekê bicih tînim.

**Ji me re hûn dikarin behsa rêwitiya albûma 'Rê-Newa' bikin?**

Rê -Newa xebatê kî min wisaye ku êdî ez dikarim bêjim 'Êdî ez dikarim bimrim' ev albûm ew qas diçe xweşiya min ku ez wê wekî zarokê xwe dibînim. Heda dawiya emrê xwe ez dê we wekî zoreki biparêzim. Album qed din ava planên min de tunebû. Li ser emailên helbestwanê har Muslum Aslan min xwe dinava wê de dît. Bi saya helbestên wî yên efsûnû, bi helbestên wekî wehî 10 rojan 10 helbast hatin. Dinava van 10 rojanda beste çêbûn. Bawer dikim, diviya helbestwanekî ne normal ê wekî Muslum Aslan, derketiba pêşberî min hunermendekî ne normal. Hêj ez qet qala aranjorê xwe Erdem Aslan nakim. Xebat bi wî re wekî mucîzeyê ye. Di vê navbere de ez naxwazim zêde pesnên xwe bidim. Lê ez ji we efû dixwazim min bibexşînin di vî warî de ez nikarim xwe bigirim. Dibe ku ji ber terzekî cudaye 'Rê Newa' neyê ecibandin. Eger neyê ecibandin ji ez xemgin nabim. Lê ya rast ew e ku daxwaz û hesretên min ên hunerî bi zêdehiyê pêkaniye. Min ev jî bo xwe çêkiriye. Ji bo daxwazên min pêk were. Qey ma ne wisaye hemû behrem wisa nînin? Hunermend tişta/berhema ji bo xwe çêdike, pêşkeşî me dike. Çi bikeve para me, em jî wê digirin. Albuma min wê bi etîketa Sony Music derkeve. Ev jî ji bo min çavkaniya dilşadiyê ye. Wan jî di vî warî de gelek alîkarî dan min. Qet pirsgirêk dernexistin. 'Rêya newa' resma min e ez di rêya mûzîkê de derketime rêwîtiyekî. Hêvî dikim ku serkeftî bûye ez ji bo we bibim çavkaniya şanaziyê.

**Van demên dawî gelek bûyerên ku civaka gele kurd diêşînin, ev tesîrek çewa li ser we dike?**

Wekî gel em van rojan gelek bi hêrsin. Ez qala xwe bikim. Qasî ji destê min tê ez hunerê tevli siyasetê nakim. Ez hunerê ji bo hunerê dikim. Gelekî me yê pir leheng heye. Emê di şerê Kobanê de teqez bi serkevin. Encam çi be bila bibe. Diviya em vê binivsin, me nivisî! Diviya me bistira, me stiriya! Bê siudiya me ya herî mezin ew e ku em li Rojhilata navin hatine dinê. Di sedsala 21'an de gelê me wekî sewalan tên serjêkirin ev êş nayê qebûlkirin. Li gel van hemuyan helwesta dewleta ku em welatiyên wêne qet nayê qebûlkirin. Hemû ciwan bertek nîşan dide ew bêdeng e. Qey ma em ê çi bêjin?

**Hun piştî vê projeyê wê çi bikin, projeyên we yên paşerojê çine?**

Ez jinekî îdealist û çi bixwazim bi destdixim. Jinekî ji Birca Nêrî me. Hemû teybetiyên Birca Nêrî li ser min hene. Min çi armanc danibe ber xwe min bidest xistiye. Niha armanca min ev e: Ez dixwazim di mûzîka kurdî de bibim yekî kul i tevahiya cîhanê tê nasîn. Li gor min eger armanc mezin neyên diyarkirin, pêşketin ji mezin nabe. Armanc çiqas mezin be, serkeftin jî wê ew qas mezin be. Di warê akademîkte jî hin armancên min hene ji bo berdewamiya vê jî ez dixebitim. Lê divê ev jî ji bîra me neçe, ez evîndarê mûzîkê me. Ka ev evîn wê me bibe ku..